

هونەرمەندان لەنێوان خۆپیشاندەران و هێزە ئەمنییەکاندان

## پەرژینی ئاشتی پرۆژە هونەرییەکانی راگرتووە

8


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora




**Prof. Dr. Ahmet Ozer:** 11

Pirsa Kurd di navbera AKP û BDP'ê de asê maye, CHP dikare çareser bike


**Deutschland 1,50 Euro** | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

**Hejmar / Nr. 85 | 3 Adar / März 2011**


# Kerkûk êdî di destê Pêşmergeyan de ye

3 »

Wêne: Rûdaw

## Çand û Huner

### Divê Kurdan 'Newala Guran' temaşe nekira

Derhênerê Kurd Hinêr Selîm pêdiviya sînemayê ji bo Kurdan wek goşt û zeletê dibîne û dibêje "an fîlmên xirab, an ên baş, sinemaya Kurd heye." Lê Selîm temaşekirina Kurdan a fîlmê tirkî 'Newala Guran' rexne dike.

Rûpel ▶8

## Diyaspora

### Yaşar Kaya û Yilmaz Çamlibel niha venagerin

Çapemeniya Tirk îdia dikir ku wê siyasetmedarên Kurd Yaşar Kaya û Yilmaz Çamlibel jî piştî Kemal Burkay vegerin welat. Lê Kaya û Çamlibel gotin ligel ku ew dixwazin vegerin, ji ber pirsgirêkên hiqûqî nikarin niha vegerin.

Rûpel ▶7

## Kurdistan

### "Bi zanebûn derziyan bikaranî şandin Kurdistanê"

Nexweşiyeke ku di nav milyonek kesî de bi kesekî re tê dîtin, di nav zarokên Kurdan de belav bûye û dibe sedemê mirina wan. Malbat îdia dikin ku zarok di dema Wezîrê Tendirustiyê Osman Durmuş de, hatine derzîkirin.

Rûpel ▶4 / 5










4 191631 701506 00009

9 771869 104000 09

Great Britain





www.rudaw.net
info@rudaw.eu

**Serokwezîrê Tirkiyê T. Recep Erdogan siyasetmedarên Alman dîsa hêrs kirin:**

# “Destpêkê zimanê zikmakî”


Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayyip Erdogan li Dusseldorfê li pêş 10 hezar kesî axifî

**Koln (Rûdaw) -** Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayyip Erdogan 27’ê Sibatê 2011 hat Almanyayê û axaftinên wî li pêş bi hezaran Tirk li bajarê Dusseldorfê mîna beriya 3 salan dîsa bûn sedema nerazîbûnên tund ên siyasetmedarên Almanyayê û guftûgoyên berfireh di çapemeniya Alman de dan destpêkirin.

Serokwezîrê Tirkiyê Erdogan 27’ê Sibatê li bajarê Almanya Dusseldorfê li pêş bêtirî 10.000 Tirkên Almanyayê axifî û daxwaz ji wan kir ku întegreyî civaka Alman bibin, lê divê asîmîle nebin û taybetmendiyên xwe biparêzin û got ku nabe mafên kêmnetewan bên paşguhkirin. Erdogan herwiha bangî Tirkên Almanyayê kir ku divê zarokên xwe fêrî almanî bikin, lê divê beriya wê fêrî zimanê xwe tirkî bikin. Dîsa roja duşemê Erdogan tevlî bernameyek televizyona almanî RTL bû û got ku “tenê yê ku zimanê xwe yê dayîkê gelekî baş bizane, dikare gelekî baş fêrî zimanê duyemîn bibe! Ji ber wê yekê divê li Almanyayê îmkan ji bo zarokên Tirk bê dayîn ku fêrî tirkî bibin“

Axaftina Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayyip Erdogan bûn sedama reaksiyonên tund ji aliyê gelek rojnamevan û siyasetmedarên Almanyayê. Berdevkê serokwezîra Almanyayê Angela Merkel jî roja duşemê bersiva daxuyaniyên Erdogan da û got ku “hikûmeta Alman di wê baweriyê de ye ku ferbûna zimanê almanî herî kêm mîna fêrbûna tirkî pêwîst e.“

Rojnamevanê Alman ê naskirî Gerd Hohler di rojnameya almanî Frankfurter Rundschau de gotinên Erdogan nirxandin û gotina Erdogan ku “nabe ti kes mafê kêmnetewan binpê bike“ bibîrxist: “Lê Kurdên li Tirkiyê wê bipirsin, ev helwest çima ji bo wan derbas nabe! Erdogan dibêje her kes azad e ku li gor ola xwe bijî, lê ji bo Xirîstiyanên li Tirkiyê ev maf nayê naskirin.“

Politologê Alman-Tirk Cemal Karakas ji Weqfa Lêkolînên Aştî û Nakokiyan li Frankfurtê (Hessischen Stiftung Friedens- und Konfliktforschung) jî axaftinên Erdogan ji rojnameya almanî “Kolner Stadt-Anzeiger“ re nirxandin got ku ew ê ji bo Tirkiyê û Erdogan gelekî baştir bibe ku destpêkê dîroka xwe ya asîmîlekirina gelan lêbikole, beriya ku ew Almanyayê rexne bike û wiha berdewam kir: “Li Tirkiyê bi milyonan Kurd, Yûnan û Ermen û Cihû hatin Tirkkirin û Misilmankirin… Heta niha ti lêkolînên cîdî derbarê vê yekê de nehatine kirin, ji xwe lêborînxwestin li aliyê din.“

Erdogan di axaftina xwe de herwiha gotibû ku dewleta Tirkiyê hemû Tirkan diparêze, çi li Lîbya û çi jî li Almanyayê. Ev gotinen Erdogan jî bûn sedema nerazîbûnên tund di nav siyasetmedarên Almanyayê de ku çawa Erdogan Almanya mîna Lîbya binav dike û herwiha destê xwe dike nav karûbarê civaka Almanyayê û li pêşiya întegrebûna Tirkên Almanyayê dibe astengekî mezin.

Beriya 3 salan Erdogan bi heman gotinên xwe li Bajarê Kolnê (“Asîmîlasyon sûcekî li dijî mirovatiyê ye“) dîsa bûbû sedema nerazîbûnên tund û rewşa Kurdan li Tirkyê bi bîra wî hatibû xistin.

# Keçeke Kurd kete parlamentoya Hamburgê

**Hamburg (Rûdaw) -** Hefta borî roja yekşemê li Almanya, Eyaleta Hamburgê, hilbijartinên herêmî û yên parlamentoyê hatin lidarxistin û keça Kurd Cansu Ozdemir bi hejmara mezin a dengên taybet ji Lîsteya Partiya Çep “Die Linke“ hat hilbijartin û kete parlamentoya Hamburgê. Di heman hilbijartinê de 71 kesên bi eslê xwe ji Tirkiyê, wek berendam beşdarî hilbijartinan bûn. Ji van du jin û çar mêr, 6 kes hatin hilbijartin.

Li Eyaleta Hamburgê hikûmeta koalisyonê ya CDU û ya Die Grunen (Keskan) belav bûbû û ji ber vê yekê hilbijartineke awarte a lezgînî hat lidarxistin. Di encama hibijartinê de Partiya Sosyal Demokrat (SPD) ji sedî 48,3 dengan stand û di parlamentoyê de bû xwediyê kursiyên herî zêde.

Keça Kurd Cansu Ozdemir ji sala 2009’an û pê ve endamê Partiya Çep e (Die Linke) û li taxa Altona xebatên xwe dimeşand. Ozdemir ji Lîsteya Die Linke wek berendama herêma Blankenese beşdarî hilbijartinên hefteya borî bû. Ozdemir rasterast ji herêma Blankenese nehat hilbijartin, lê bi 9 hezar û 614 dengên taybet ên ji bo Die Linke derketibûn, wek berendama duyem a dengên herî zêde stand, hat hilbijartin.

Cansu Ozdemir rexne li siyasetmedarên Alman kir û got, “Dibêjin ku penaber naxwînin, lê pêşiya wan kesên ku dixwazin bixwînin jî venakin.” Ozdemir ragihand ku ew dixwaze di parlamentoyê de di komîsyonên koçberî, perwerde û çandê de bixebite.

Cansu Ozdemir di sala 1988’an de li bajarê Hamburgê hatiye dinyayê û ji 16 saliya xwe ve di rêxistinên xwendevanan û saziyên civak de xebatê dimeşîne. Ozdemir ji bilî kurdî û almanî, tirkî û îngilizî jî dizane.

**Cansu Ozdemir jî kete nav çendîn parlamenterên Kurd ên li parlamentoyên Almanya yên herêmî**


Cansu Ozdemir






**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemmed Orhan
kaniyajiyane@hotmail.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

# "Pêşmerge êdî ji Kerkûkê venagerin"

▶Serokê Civata Kerkûkê Rizgar Elî: Pêşmerge bi rêkeftina ligel Amerîkiyan hatine nav Kerkûkê û Pêşmerge êdî ji Kerkûkê venagerin.

▶Prof. Udo Steinbach: Ez bawer nakim ku Amerîkiyan destûra bicîhbûna Pêşmergeyan li Kerkûkê dabe.


Wêne: Rûdaw

**Hewlêr (Rûdaw) -** Êdî Pêşmerge li Kerkûk û navçeyên din yên Kurdnişîn in û hewl didin ku kontrola wan herêman bixin destê xwe. Bi salan bû Kurd ji bo wê yekê dixebitin ku maddeya 140 ya destûra Îraqê bê bicîhkirin û çarenûsa Kerkûkê û navçeyên din yên ji Herêma Kurdistanê veqetandî diyar bibe, lê Hikûmetên Îraqê û Erebên wan herêmên cihê nakokiyê her pirsgirêk derdixistin û proseya vegera wan herêman ya ser Kurdistanê bi-paşdixistin.

Lê piştî ku serkirdên Kurdan pê hesiyan ku hêzên "şovenîst" bi piştevaniya Hêzên Neqişbendî - ku kevnebaasî û cîgirê Saddam Hussein, Eysed Dûrî serokatiya wan dike - û hêzên Sehwe ku ji aliyê Serokwezîrê Îraqê Nûrî Malîkî ji bo şerê li dijî Al-Qaîda hatibûn avakirin, plana wê yekê dikin ku bi armanca bidestxistina Kerkûkê û derxistina Kurdan ji nav bajêr û deverên derdora Kerkûkê, pirsgirêkan li Kerkûkê û derdorê wê derxînin, hêzên pêşmergeyan roja 24'ê Sibatê 2011 Kerkûk û herêmên din yên Kurdnişîn xistin jêr kontrola xwe. Beriya ku pêşmerge biçine Kerkûkê, fermandarê pêşmergeyan Ezîz Weysî daxuyand ku hêzên pêşmerge ji bo parastina ewlekariya Kerkûke li bajêr bicîh dibin û dixwazin hemû netewên li Kerkûk û derdorê wê biparêzin.

Roja 25'ê Sibatê 2011, weke ku hatibû plankirin, hinek aliyên Ereb xwepêşandanek li Kerkûkê lidarxistin û agir berdan beşek ji avahiya parêzgarê Kerkûkê. Xwepêşanderan sloganên li hemberî maddeya 140 ya destûra Îraqê û Kurdan qîriyan û digotin ku Kerkûk ya wan e. Di heman rojê de hêzên Ereb yên dijberên Kurdan Celewla xistin jêr kontrola xwe û berê xwe dan Kerkûkê jî. Lê di navbera wan hêzên Ereb û Peşmergeyan de pevçûn derketin û pêşmergeyan dikarî pêşî li wan bigrin û çendek ji wan Ereban jî dîl hatin girtin.

Niştecihên Kerkûkê yên Kurd bi hatina hêzên pêşmergeyan gelekî kêfxweş in û dibejin ku êdî ew xwe jêr ewlekariyê de dibînin. Ronakbîrê Kurd Emced Şakelî piştî bicîhbûna hêzên Pêşmergeyan li Kerkûkê got ku "eger bi rastî Kerkûk û Mendelî Kurdistan bin, ne heq e ku pêşmerge dîsa ji Kerkûkê derkevin."

Di civîna 27'ê Sibatê 2011 di navbera aliyên Kurd li Kerkûkê de Kurdan yekhelwestiya xwe derbarê Kerkûkê de diyar kirin. Di daxuyaniya çapemeniye ya piştî civînê de Nêçîrvan Barzanî axaftinek kir û got ku dema Kurd li Kerkûkê digihijin hev, biratiya di navbera wan de gelekî bihêztir dibe û wê gelekî baş be ku dema Kurd bi pirsgirêkan re rûbirû bin, ew bên li Kerkûkê li ser wan pirsgirêkan hevdu bibînin.

Wezîrê Pêşmergeyan Şêx Cafer Mistefa derbarê xwepaşvekişandina Pêşmergeyan ji Kerkûkê daxuyand ku "heya metirsiya şovenizma Ereban li ser Kurdên Kerkûkê û deverên derûdorê hebe, hêzên Pêşmerge ji bo parastina wan li wir dimînin." Daxuyaniyek bi heman rengî ji Serfermandarê Pêşmergeyan Ezîz Weysî hat û Weysî got ku çûna Pêşmergeyan ya nav Kerkûkê li ser daxwaza parêzgarê Kerkûkê pêk hatiye û heta parêzgar nebeje herin, Pêşmerge ji Kerkûkê naçin. Serokê Civata Kerkûkê Rizgar Elî jî derbarê çûna Pêşmergeyan a nav Kerkûkê daxuyaniyek da û got ku hatina Pêşmergeyan a nav Kerkûkê bi rêkeftina ligel Amerîkaniyan pêk hatiye û Pêşmerge êdî ji Kerkûkê venagerin.

Bi hatina Pêşmergeyan Kurdên Kerkûkê û navçeyên din yên Kurdnişîn yên ji Herêma Kurdistanê veqetandî hêvî dikin ku zexta Erebên şoven li ser wan bi dawî bibe. Bi taybetî piştî ku hêzên Pêşmergeyan ji navçeyên derdorê Kerkûkê vekişiyan, pirsgirêk û zexta li ser Kurdan zêde bûbû û li bajarên mîna Celewla hema hema hemû Kurd (600 malbat) ji bajêr hatin derxistin. Di van salên dawî de tenê li navçeyên Celewla û Saadiye bêtirî 400 Kurd hatin kuştin.

Serokê Civata Kerkûkê Rizgar Elî: Pêşmerge bi rêkeftina ligel Amerîkiyan hatine nav Kerkûkê û Pêşmerge êdî ji Kerkûkê venagerin.

Prof. Udo Steinbach: Ez bawer nakim ku Amerîkiyan destûra bicîhbûna Pêşmergeyan li Kerkûkê dabe.

## Ahmet Davutoglu: Kerkûk nasnameya Tirkmenan e



Li gor nûçeyek rojnameya Turkish Todays Zaman, Wezîrê Derve yê Tirkiyê Ahmet Davutoglu di hevdîtinek ligel serkirdên siyasî yên Tirkmenên bajarê Telahferê ji wan re gotiye ku Îraqek yekgirtî ji bo wan gelekî girîng e û qedera Îraqiyan qedera Tirkiyê ye jî û ew ê ti hemwelatiyekî îraqî bê piştgirî nehêlin û wiha berdewam kiriye: "Kerkûk nasnameya Turkmenan e û Telahfer jî keleya wan e ku wê ti caran dest jê neyê berdan." Davutoglu herwiha bangî serkirdên Tirkmen kir ku piştgirê bihevrejiyana gelên li Îraqê bin, bêyî cûdabûna wan a olî.

Serkirdên Turkmen ji bo bidawîhatina pirsgirêkên di navbera Sunî û Şîî'yên Tirkmen yên bajarê Telahferê çûbûn Tirkiyê.

# "Dibe ku Kerkûk manovreyek serkirdên Kurd be"

**Koln (Rûdaw) -** Prof. Udo Steinbach pisporê Zanistên Îslamî û Rojhilata Navîn e û ji sala 1976'an heta 2006'an dîrektorê Enstîtuya Alman a Orîent li Hamburgê bû. Prof. Steinbach derbarê bûyerên dawî li Îraq û Kurdistanê bi giştî û bicîhbûna hêzên pêşmergeyan li derdora Kerkûkê bi taybetî, ji Rûdawê re nêrînên xwe anîn ziman.


**Prof. Udo Steinbach**

Piştî xwepêşandanên hinek aliyên Ereb û Tirkmen li Kerkûkê û qezayên derdora Kerkûkê, ji bo parastina aramiya nav bajêr û parastina dezgehên hikûmî û hemwelatiyên Kurd, hêzên pêşmergeyan li derdora Kerkûkê bicîh bûn. Bi bicîhbûna hêzên pêşmergeyan nerînên ku dibe pêşmerge bi destûra Amerîkaniyan li wan herêman bicîh bûbûn û belkî êdî peşmerge xwe ji wan deran venekişînin, belav dibin.

Prof. Steinbach derbarê wan baweriyên ku dibêjin pêşmerge bi destûra Amerîkiyan li Kerkûkê bicîh bûne, dibêje ku ew bawer nake Amerîkî destûra vê yekê bidin, ji ber ku Amerîkî jî dixwazin bi rêkûpêkî xwe ji Îraqê vekişînin, bêyî ku şerekî di navbera Kurd û Ereban li paş xwe bihelin û şerekî di navbera Kurd û Ereban li ser Kerkûkê tiştê herî dawî ye ku pêwîstiya Amerîkiyan di rewşa niha de pê heye. Prof. Steinbach dibêje ku jixwe ji aliyê leşkerî ve Amerîkî li Îraqê êdî ne xwediyê wê hêzê ne ku bikarin bi zorê daxwazên xwe li ser aliyên siyasî bidin qebûlkirin û wiha domand: "Tevî wê yekê jî pêwistiya Kurdan bi piştgiriya siyasî ya Amerîkiyan heye û ez bawer nakim ku Kurd dikarin di rewşa niha de dest ji piştgiriya Amerîkiyan berdin."

Prof. Steinbach herwiha helwesta Tirkiyê derbarê Kerkûkê de bibîr anî û got tevî ku di van salên dawî de Hikûmeta Tirkiyê pêwendiyên xwe ligel Herêma Kurdistanê bi awayekî erênî guhertine jî, dîsa ew ne bawer e ku Tirk vê yekê qebûl bikin ku statuya Kerkûkê bê guhertin, ji ber ku Tirkan gelek caran gotine ku ew ê girêdana Kerkûkê bi Herêma Kudistanê ve qebûl nekin. Prof. Steinbach anî ziman ku ji bilî Tirkan, jixwe tiştekî diyar e ku ne welatên herêmê û ne jî serkirdên Ereb naxwazin ku Kerkûk vegere ser Herêma Kurdistanê û ew ê vê yekê qebûl jî nekin.

Li gor Prof. Steinbach, dibe ku sedema herî bi mantiqî ji bo bicîhbûna hêzên pêşmergeyan li Kerkûkê û derdorên wê ew be ku li Herêma Kurdistanê jî xwepêşandan berfireh dibin û dibe ku rayedarên Kurd bixwazin bi derxistina pêş a meseleya Kerkûkê agenda siyasî biguherînin û bixwazin bangî hizrên netewî û yekîtiya Kurdan bikin û meseleya Kerkûkê ji ber vê yekê derdixin pêş.

Li aliyê din, di civîne ku di 27'ê Sibatê li Kerkûkê pêk hat û ligel Kosret Resûl (Cîgirê Yekem ê Sekreterê Giştî yê Yekîtiya Niştimanî ya Kurdistanê - YNK) û Neçîrvan Barzanî (Cîgirê Serokê Partiya Demokrata Kurdistanê - PDK), Tevgera Goran jî di nav de hemû partiyên opozisyona Kurd amade bû, daxuyaniyek hat dayin ku planek dijberên Kurdan derbarê Kerkûkê de heye û ew weke aliyê Kurd ji bo têkbirina vê planê xwedî heman helwest in. Neçîrvan Barzanî jî di wê civînê de got ku ew weke Kurd ji Kerkûkê dernakevin, heta rewşa Kerkûkê dîsa normal nebe.

Tevî ku Prof. Steinbach pê ne bawer e jî, lê wî anî ziman ku bêguman dibe ku serokên Kurd di wê baweriyê de bin ku di nav vê rewşa dawî ya li Rojhilata Navîn û Îraqê de ew dikarin faktûmekê pêk bînin û ji ber wê yekê hezên peşmergeyan li wan herêmên cihê nakokiyê û Kerkûkê bicih kiribin û wiha got: "Lê ji xwe ji berê de ez di meseleya Kerkûkê de û proseya girêdana vî bajarî bi Herêma Kurdistane ne zêde geşbîn im û girêdana Kekûkê bi Herêma Kurdistanê wê bibe sedemê nakokiyên mezin di navbera wan û Erebên Îraqê li aliyekî û welatê cîran li aliyê din."

### Bi sedan zarok li ber mirinê ne:

# MIRINA SOR

**SSPE nexweşiyeke ku bi mirinê bidawî dibe. Ev nexweşî normalî di nav 1 milyon kesî de tenê bi kesekî re peyda dibe. Lê tenê li Amedê 300 zarok bi vê nexweşiyê ketine. Gomanên malbatan: Dewletê bi zanebûn derziyen demborî li zarokan wan xistine.**

**Bawer Çem** Amed

Di van salên dawî de bi sedan zarokên Kurd ji ber nexweşiya SSPE - ku li cîhanê di nav milyonek kesî de bi kesekî re tê dîtin - mirin û bi sedan jî li ber mirinê ne. Ji sedî 90'ê van zarokan di dema Wezîrê Tendirustiyê yê MHP'ê Osman Durmuş de ji bo pêşîlêgirtina sorikê hatin derzîkirin. Li gorî îdiaya malbatan, wezir Durmuş bi zanebûn derziyên demborî ên sorikê şandine bajarên Kurdan û bi vê yekê pêşî li belavbûna vê nexweşiyê li Bakurê Kurdistanê vekiriye.

SSPE: Navê wê yê di tibê de Subakut Sklerozan Panensefalit e. Ev nexweşî ji vîrûsa sorikê peyda dibe û merheleya dawî ye û hertim bi mirinê bi dawî dibe. Heta niha jî dermanê vê nexweşiyê tune. Ev vîrûsa ku pêşî di mêjiyê mirov de hêlîna xwe çêdike, mirov dikuje. Ev nexweşî li cîhanê di nav milyonek kesî de tenê bi kesekî re tê dîtin û ev nexweşî tenê li welatên cîhanê yên 3'emîn de tê dîtin.

Her çiqas li gorî statîstîkan ev nexweşî di nav milyonek kesî de tenê bi kesekî re bê dîtin jî, tenê li Amedê bi sedan zarok bi vê nexweşiyê ketine. Gelek ji van zarokan mirine û yên mayî jî li benda mirinê ne. Lê derbarê vê nexweşiyê de hêj bi awayeke bi rêk û pêk ti lêkolîn nehatine kirin. Ji ber vê yekê jî nayê zanîn ka heta niha çiqas zarok bi vê nexweşiyê ketine. Ne Wezareta Tendirustiyê ya Tirkiyê û ne jî rayedarên dewletê di vê mijarê de ti lêkolînan nakin.

Tenê li Amedê behsa 300 zarokên nexweş tên kirin. Li Ruhayê 210, li Êlih, Şirnex û Mêrdînê jî bi sedan zarokên din. Tevî ku ji ber tunebûna lêkolînan hejmarên tam derbarê belavbûna vê nexweşiyê li ber destan tune bin jî, lê tê gumankirin ku ev nexweşî li bajarên Kurdan bibe yek ji nexweşiya herî zêde ku zarok jê dimirin. Li gorî gelek bijîşkan ji ber ku di salên 1987-1999'an de li Tirkiyê ji bo pêşîlêgirtina sorikê tenê carekê aşiya sorikê li zarokan hate xistin, ji ber vê yekê jî ev têrî pêşîlêgirtina vê nexweşiyê nekir. Lê heman bijîşk nikarin bersiva pirsa "Li rojavayê Tirkiyê jî ev aşî tenê carekê hate lêxistin, lê ev nexweşî li wir pir hindik derkete holê. Bes li bajarên Kurdan ev nexweşî pir zêde ye û gelek zarok heta niha ji vê nexweşiyê mirine. Gelo çima li vir evqas zêde ye?" bidin.


Wêne: Rûdaw
Bavê Sara: "Ev 8 sal in em li ber serê wê ne, li benda mirina wê ne. Mixabin rastî ev e"


Wêne: Rûdaw
Kubra Guzelguna 14 salî ye. Kubra ku xwîşka 4 zarokan e

### Vekirina dozê zehmet e

Li gorî daneyên Nexweşxaneya Zarokan a Amedê tenê di 2010'an bi 256 zarokî re nexweşiya SSPE hatiye tespîtkirin. Ji van nexweşan 135 zarok li navenda Amedê, 51 zarok li navçeyên Amedê dijîn. Nexweşên din jî ji bajarên derdora Amedê hatine. Digel ku ev hejmar evqas zêde ne jî malbat nikarin doz vekin. Lewre gelek astengiyên burokratîk ji malbatan re tên derxistin. Ji malbatên ku dixwazin doz vekin "karta anîna zarokan" û "karta aşîkirina zarokan" tê xwestin. Lê ji ber ku ev nexweşî piştî aşîkirina sorikê bi salan derdikeve holê, malbatan hewcedarî nedîtiye ku van kartan biparêzin. Dema mirov 10-15 sal berê rewşa bajarên Kurdan a li Tirkiyê bîne ber çavê xwe, mirov pir rihet dikare fêm bike ku ew çax "welidîna li nexweşxaneyê" pir kêm e.

> **Bijîşk ji min re got 'Ev zarok wê di pêşerojê de nikaribe bimeşe, wê nikaribe bixwe, vexwe, wê nikaribe xwe ji cihê xwe bilebitîne û herî dawî jî wê bimire.'**

### Du komele hatin avakirin

Ji ber ku kes xwedî li malbatan derneket û dewletê jî ev pirsgirêk piştguh kir, malbat neçar man ku li hev bicivin û xwe birêxistin bikin. Di encama birêxistinbûna malbatan de, tenê li Amedê du komele hatin avakirin. Herdu komele jî di sala 2005'an de hatin avakirin. Zarokê yek ji serokên komeleyê jî ji ber vê nexweşiyê jiyana xwe ji dest da. Zarokê serokê din jî li ber mirinê ye. Keça bi navê Sara ya Serokê Komeleya Nexweşiyên SSPE, Ercan Akto, niha 14 salî ye. Beriya 8 salan bi nexweşiya SSPE ket. Ercan Akto diyar kir ku ji ber keça wî nekariye serê xwe bigre û serê wê tim ketiye ber, bi lez û bez keça xwe biriye nexweşxaneyê. Akto naskirina SSPE'yê ji Rûdawê re wiha vegot: "Min keça xwe bir Nexweşxaneya Zarokan a Amedê. Li nexweşxaneyê razandin. Ji pişta wê av girtin û şandin Enqereyê. Piştî ku encam hat, derkete holê ku bi nexweşiya SSPE'yê ketiye. Min bawer nekir, rabûm min keça xwe bir Enqereyê. Lê li wir jî heman tişt gotin. Bijîşk ji min re got 'Ev zarok wê di pêşerojê de nikaribe bimeşe, wê nikaribe bixwe, vexwe, wê nikaribe xwe ji cihê xwe bilebitîne û herî dawî jî wê bimire.' Min bawer nekir. Ji ber ku dema bijîşk ji min re ev tişt digotin, keça min dimeşiya, diaxivî. Lê du roj piştre keça min nekarî bimeşe, piştre nekarî biaxive, niha jî nikare bixwe, vexwe. Weke termekî mirî di nava cihan de ye. Nikare xwe ji cihê xwe bilebitîne. Tenê xwarina bebekan dixwe. Ev 8 sal in em li ber serê wê ne, li benda mirina wê ne. Ji bo bavekî libendamayîna mirina keça xwe pir zor e, lê mixabin rastî ev e."

### Wezîrê MHP'î derziyên bayat şandin

Hejmara endamên komeleya Akto 150 ye. Li gorî Akto, gelek malbatên ku xwe qeyd nekirine jî hene lê haya wan ji vê meseleyê tune ye. Akto diyar kir ku ji bo lêkolînkirinê wan gelek caran ji Wezareta Tendirustiyê û Midûriyeta Tendirustiyê ya Amedê statîstîka zarokên ku bi vê nexweşiyê ketine û ji vê nexweşiyê mirine xwestine, lê heta niha ti

Berdewam rûpel 5 ▶

#### SSPE çi ye?

Nexweşiya SSPE ji mîkrobeke sorikê pêk tê. Ev mîkroba ku di mêjî de bi cih dibe, bi salan piştî nexweşiya sorikê aktîf dibe û di mêjî de texrîbateke mezin çêdike. Nexweşî ji 4 merheleyan pêk tê. Di merheleya yekemîn de jibîrkirin, hêrsbûn; di merheleya duyemîn de pekandina ji cih dest pê dike. Di vê merheleyê de zarok bi tena serê xwe nikare xwarin bixwe. Di merheleya sêyemîn de jî nexweş weke termeke mirî di nava cihan de dimîne, nikare xwe bilebitîne. Bi lûleyeke ku li poz dixin, bi xwarinên avî jiyana xwe didomîne. Di merheleya çaremîn de, dikeve komayê. Ji ber ku sîstema îmmunolojiyê hildiweşe, laşê wan nikare li hemberî enfeksiyonê xwe biparêze. Piraniya wan nexweşan an bi enfeksiyonê dimirin, an jî ji ber nikarin tûka xwe daqurtînin, difetisin û dimirin.

# Li Silêmaniyê cade ji destê opozîsyonê jî derketiye

▶Çavdêrekî Amerîkî li Silêmaniyê: Tiştê niha heye heyecaneke girseyî ye, lê îhtîmale di dahatûyê de bihêztir bibe.

▶Ronakbîrekî Silêmaniyê: Goran, Yekgirtû û YNK'ê dixwazin kolanê bi aliyê xwe ve bikişînin, lê ne serkeftî ne.

**Silêmanî (Rûdaw) -** Piştî roja 17'ê Sibatê ku xwepêşandanên tund li Silêmaniyê çêbûn, êdî cade di destê partiyên opozîsyonê de jî nema. Li Seraya Silêmaniyê ku niha navê Meydana Azadî lê kirine (wek çavlêkirina Misrê), belavbûna di nav xwepêşanderên meydanê de tê dîtin. Beşê aliyê jor kom dibin û beşê aliyê jêr çaverêya çûna berbi cada Mewlewî dikin. Partiyên opozîsyonê nemaze Goran û Yekgirtuya Îslamî.
dixwazin xwe bigihînin wê derê û li ser acendayên xwe kar bikin.

Lê sîmayên xwepêşandaneke sivîl li meydana Azadî, roj bi roj zêdetir derdikevin. Yekemîn roj heta roja sêyem xwepêşandan li Silêmaniyê pir tund û hişk bûn, lê niha bi hatina grûba 'Perjînî Aştî' ku bi cilên spî dikevin navbera xwepêşander û hêzên ewlekariyê, rewş aram e. Pêşkêşkirina şêranî û daleqandina gulan bi lûleyên çekên wan ve, hesteke ecêb ji hêzên ewlekariyê re çêkir. Pêşmergeyekî got: "Wisa li me dikin ku em jî li dijî hikûmetê rabin."

**Piştî hatina grûba 'Perjînî Aştî' ku bi cilên spî dikevin navbera xwepêşander û hêzên ewlekariyê, rewş aram e**

Beşê herî germ ê meydanê ew ciwan in ku li pêşber mîkrofona meydana Azadî rawestiyane û çaverêya sloganekê dikin da ku li çepikan bidin û bikin hawar. Di dawî de hawar û li çepikan xistin digihe rêzên dawî, dîsa ew ciwan slogana 'aştî aştî' bi dengekî hê bilindtir dibêjin. Dema ku gotin "hilweşe hilweşe" hemû hawar dikin bila birûxe.

Steve Adam (65) kesekî Amerîkî ye û di nav xwepêşanderên meydana Azadî pir bi hûrbînî çavê xwe digerîne. Adam bo Rûdawê dibêje: "Tiştê di xwepêşandanê de dibînim, hest dikim niha heyecaneke girseyî ye, lê ne dûr e di demeke nêzîk de bikeve qalibê şoreşeke ciwanan wek me li Misrê dît." Derbarê wekheviya rewşa siyasî û civakî ya Misrê û Herêma Kurdistanê, Adam "wekheviyeke kêm û cudahiyeke zêde" dibîne.

Hejîr Osman (19) ciwanekî bajarê Silêmaniyê ye û di nav xwepêşanderan de bi tundî sloganan davêje: "Ji bo reforman hêviya me bi berpirsên hizbî û îdarî li Herêma Kurdistanê nemaye, loma em dixwazin cihên xwe ji bo kesên baştir û dilsoztir vala bikin." Navbirî û beşekî zêde yê li meydana Azadî red dikin ku bi dehifdan û germkirina partiyên opozîsyonê daketine ser cadeyan, lê nivîskar û çavdêrê ji Silêmaniyê Eta Qeredaxî derbarê rola partiyên opozîsyonê de tiştekî din dibêje: "Tevgera Goran, Yekgirtuya Îslamî û YNK jî dixwazin van xwepêşandanan bi aliyê xwe ve bikişînin, loma xwepêşandan bela wela dixuye, lê dengê zêde û bihêz dengê xelkê ye, ên ku daxwaza refurmên bingehînî dikin."

Steve Adam jî ragihand: "Ne hêsan e ti partiyek bikare vê heyecana xelkê kontrol bike, min gelekî çavdêriya bûyerên şoreşa 25'î Çileyê li Misrê kir, hinekî ji wê li Kurdistanê dibînim, nemaze amadebûna zêde ya ciwanan li ser cadeyane."

Lê ciwanên xwîngerm li meydana Azadî li Silêmaniyê, sloganên xwe ron û eşkere wesif dikin.

**Derbarê derziyên kevinbûyî de agahî didin Durmuş, lê ew dibêje, "Wan derziyan bişînin Başûrê Rojhilat"**


Ercan Akto

**Min Wezîrê Tendirustiyê yê AKP'ê Recep Akdag agahdar kir. Wî tenê gotina 'Beriya me çêbûye' bi kar anî.**


Abdullah Arat

## Wezîrên Tendirustiyê hevdu tewanbar dikin

Du wezîrên tendirustiyê yên Tirkiyê li ser mijara derziyên xirab, ketin qirika hev: Wezîrê Tendirustiyê yê AKP'ê yê niha Recep Akdag û Wezîrê Tendirustiyê yê MHP'ê yê berê Osman Durmuş.

Parlamenterê MHP'ê yê Kirikkaleyê û Wezîrê Tendirustiyê yê berê Osman Durmuş di rûniştina parlamentoyê ya 20'ê Kanûnê 2009 de ragihand piştî ku wî di bernameyeke televizyonê de gotiye derziyên xirab ên bi xeter ji bo Rojhilat tên şandin, kamyonên ku derziyan hilgirtine hatine zivirandin. Durmuş îdia kir ku derziyên ku li ser sewalan hatine ceribandin û bandorên wan ên neyênî hatine dîtin, nehatine binerdkirin û got: "Ev derzî bi armanca ku ji bo Başûrê Rojhilat bên şandin, li kamyonan bar kirine. Ez beşdarî bernameyeke televîzyonê bûm û min got di destê min de belge û zanyarî hene. Paşê ew kamyon hatin vegerandin. Divê Serokwezîr îstifa bike û dozger dive bi hinceta kuştina hevwelatiyan doze vekin." Wê demê Wezîrê Tendirustiyê yê AKP'yî Recep Akdag jî bersiva Durmuş dabû û gotibû ku tiştek wisa nebûye û ew bi heman çavî li 81 bajaran mêze dikin.

Weke ku Serokê Komeleya Xizmên Nexweşên SSPE, Abdullah Arat, ji Rûdawê re got, wî di hevdîtina xwe ya ligel Wezîrê Tendirustiyê yê AKP'yî Recep Akdag re behsa wan derziyan kiriye û wezîr jî tenê ev bersiv daye wî: 'Beriya me çêbûye'.

**Em bi heman çavî li 81 bajaran mêze dikin**


Recep Akdag (AKP)


Osman Durmuş (MHP)

**AKP'ê derziyên xirab şandine herêma Kurdan**

bersiveke erênî negirtine. Akto wiha pêdeçû: "Van statîstîkan ji me vedişêrin. Ji ber vê yekê di serî de şanepirs (nîşana pirsê) çêdibin. Gelek malbat wisa bawer dikin ku ev derziyên kevinbûyî bi zanebûn li zarokên Kurdan xistine. Heta kesên ku dibêjin şerê biyolojîk kirine jî hene. Ev derzî di 1999'an de, di dema Wezîrê Tendirustiyê yê MHP'ê Osman Durmuş, li zarokan hatin xistin.

Bi qasî ku min bihîst, dema ku derziyan ji Hindistan an jî Malezyayê tînin, di balafirê de pirsgirêk derdikeve. Zincîra cemidandinê xira dibe. Ji ber vê yekê derzî bayat (xirab) dibin. Derbarê mijarê de agahî didin Osman Durmuş. Lê ew dibêje 'van derziyan bişînin Başûrê Rojhilat' (Bajarên Kurdan). Di vî warî de helbet di destê min de ti belge, agahî û delîl tune ne. Min tenê ev yek bihîst. Madem ku ti pirsgirêk tune ye, çima li ser vê pirsgirêkê nasekinin? Li gorî min, bi zanebûn wisa kirine."

### Sercan piştî 4 salan mir

Komeleyeke din ya xizmên nexweşên bi SSPE, Komeleya Xizmên Nexweşên SSPE ye. Serokê komeleyê Abdullah Arat e. Kurê Arat, Mehmet Sercan Arat, di 1997'an de hatibû dinyayê. Di 2003'an de li Nexweşxaneya Zarokan a Amedê hate teşhîskirin ku Mehmet Sercan jî bi nexweşiya SSPE ketiye.

Sercan ku di pola yekemîn a dibistana seretayî de bi vê nexweşiyê ket, tenê 4 salan karî li ber xwe bide û piştre jiyana xwe ji dest da. Mehmet Sercan jî wekî hemû nexweşên din derziya sorikê lê hatibû xistin.

Ev komeleya jî xwedî 120 endam e û ji wan 80 malbatan zarokên xwe ji dest dane. Ev jî tê vê wateyê ku di nava 6 salan de 80 zarokên endamên vê komeleyê jiyana xwe ji dest dan.

### Ma zarokan dişînin mirinê?

Li gorî agahiyên ku Serokê Komeleya Xizmên Nexweşên SSPE Abdullah Arat dan, ji sedî nodê zarokên ku qeyd kirine 11-12 salî ne. Her çiqas Arat bi awayeke eşkera nebêje jî, di serê wî de jî gelek şanepirs hene. Arat da zanîn ku di vê bûyerê de piştguhkirinek mezin a dewletê heye û nêrîna xwe wiha anî ziman: "Sedema vê nexweşiyê derzîkirina yek car û bayatbûna van derziyan e. Heta niha 30-40 endamên me doz vekirin. Lê hêj ti doz bi encam nebûne. Ev nexweşî li rojavayê Tirkiyê jî heye, lê li wan deran kêm e. Li vir pir zêde ye. Beriya demekê min bi Wezîrê Tendirustiyê yê AKP'ê Recep Akdag re hevdîtin pêk anî. Wî derbarê mijarê de tenê gotina 'Beriya me çêbûye' bi kar anî. Ez nizanim ev gotin tê çi wateyê. Dibêjin haydê zarokno, herin dibistanê. Lê zarokên me diçin mirinê."

### Li benda mirinê ye

Yek ji zarokên nexweş jî Kubra Guzelguna 14 salî ye. Kubraya ku xwîşka 4 zarokan e, di sala 2007'an de diçû pola 4'emîn a dibistana seretayî, niha di nava cihê xwe de li benda mirinê ye. Bavê Kubrayê, Şeyhmus Guzelgun, ku her çiqas dizane ku ti îhtîmala başbûna vê nexweşiyê tune ye jî, naxwaze hêviyên xwe bi temamî bişkêne.

Bav Guzelgun, ji bo ku zarokên din bi vê nexweşiyê nekevin, ji dewletê dixwaze ku sedema vê nexweşiyê tespît bikin û derbarê mijarê de ji raya giştî re agahiyên zelal û tatmînkar bidin.

# Grûba herî mezin a qeçaxçiyên Kurd hat girtin

▶Ev grûb li herêmê wek, „Grûba Kudan a bê rehm“ tê naskirin

▶Grûbê hemû cîhên rawestandina kamyonan xistibû bin kontrola xwe û penaberan ji vir rê dikir Brîtanya

**Rûdaw -** Li dadgehek a bajarê Brûksel a Belçîka, 13 Kurd bi tometa 'Bazirganiya mirovan' hatine dadgehkirin û cezayê 2-8 salan girtîgeh ji wan re hatiye birîn. Ew Kurd ji aliyê polîsên Belçîka û gelê herêmê ve wek "Grûba Kurdan a bê rehm" tê naskirin. Polîs texmîn dikin ku di nava 2 salan de nêzî nîv milyon Euro ji qeçaxçîkirinê ketibe destê wan.

Temenê Peter nêzî 25 salan e û xwendekar e. Peter li benzînxaneyek li ser rêya navnetewî E-40'ê ku li ser sinorê deryayî yê navbera Belçîka û Birîtaniya dirêj dibe, behsa berî du salan dike; Qeçaxçiyên Kurd ew tengav kiribûn; "Lezûbez hatin hindir û her tim temaşeyî kamerayên nava benzînxaneyê dikirin.." Navbirî 3 sal e li wê benzînxaneyê çend saetan kar dike û mesrefa xwendina xwe derdixe. Dema em nûçeya cezakirina qeçaxçiyan a ji aliyê dadgehê ve didinê, pê dikene û dibêje: "Gihan cezayê xwe." Çîroka qeçaxçiyên ku Peter behs dike, ji sala 2009'an ve dest pê dike. Hêjmara wan 14 kes bûn û hemû jî ji Başûrê Kurdistanê bûn.

### Polîs xwe vedişêrin

Polîsên Belçîkî xwe ji behskirina hûritiyên wê dosyeyê vedişêrin. Ne polîsên federalî û ne jî polîsên Brûksel-Asse amade nabin ku ji Rûdawê re biaxivin. Dema em têkiliyê bi nivîsîngeha rojnamevanî ya polîsan ve çêdikin, ji me re dibêjin, ya hûn pirs dikin, bersiva wê li gel me nîne.

Polîsên Brûksel-Asse di sala 2009'an de dest bi pêngava lêgerîna ji bo dîtina kesên bazirganî bi mirovan dikin, kirin. Wê demê polîs li benda her tiştekê bûn, lê ne li benda wê yekê bûn ku rastî grûbek qeçaxçiyên Kurd ên li wê herêmê bibin. Ev li ser şikayîta dozgerê giştî qeçaxçiyan digirin û roja 9'ê Sibat a 2011'an li dadgeha Brûkselê li himberê wan doz hatiye birêvebirin.

### Pereyê xwe rêkirine Kurdistanê

Destpêka eşkerebûna wê grûbê wek tesadufê ye: Hinek ji endamên din ên wê grûbê li navçeyekê tên binçavkirin û di mikûrhatinê de behsa hebûna; "Grûbek Kurd a tûnd" dikin. Li gor gotinên wan wê grûba Kurdan hemû cihên rawestandina kamyonên barhilgir kontrol kirine û ti grûbek din bêyî pirsa wan nikare li wan parkan kar bike. Endamên gûbê li wê parkê qeçaxçiyên koçber ên ne yasayî bi dizî siwarî wan wesayîtên barhilgir dikin. Piştre ber bi Birîtanya ve rêdikin.

Polîsên federal ên Belçîka di lêkolînên dawiyê de gihan wê encamê ku ew 14 Kurd di navbera salên 2009-2011'an de herî kêm 160 grûbên penaberan ber bi Birîtanya ve rêkirine. Di encama vê yekê de jî nêzî nîv milyon Euro ketiye destê wan. Polîsên Federalî yên Belçîka di lêkolînên xwe de digihîn wê encamê ku ew pere, "Bi rêya bankê cara yekem li Birîtanya kom kirine." Piştre bi rêyên ne fermî rêkirine Başûrê Kurdistanê, "Li wê derê jî xanî, zevî û tişt pê kirîne."

### "Mişkên hişyar"

Niha parkên li ser rêya E-40 aram in. Di hinek parkan de di nava rojê de şofêrê wan wesayîtên barhilgir razayîne. Dema em li yek ji wan parkan dest bi wênegirtinê dikin, xebera kesê jê çênabe û em ti dengekê jî nabihîsin. Weke ku hikûmkirina wê grûba Kurdan aramî xistiye dilê wan û êdî ji ti tiştê natirsin. Em digihin parkek din. Li wê derê jî hêjmarek şofêrên barhilgir rawestiyane, lê vê carê zilamek ji kamyonek barhilgir tê xwar û ber bi me ve tê. Dema em li gel diaxivin, amade nabe ku navê xwe bêje û wênegirtinê jî qedexe dike. Em jî daxwazê jê dikin ku li beramberî hinek penaberên ku rojek ji rojan di kamyona wî de hatîn girtin, ji me re bêje. Ji bo wî şofêrî Alman, penaber wekî; "Mişkê hişyar in." Navbirî wiha dom dike; "Gelek caran dema polîsan ew kamyonên barhilgir radiwestandin û lê digeriyan, ez rastî ecêbmayînê bûm çawa karîne xwe wisa bi awayek baş veşêrin."

Ew dibêje, 6 sal in di wê rêyê de kar dike û hinek penaber dîtine ku di wesayîtên barhilgir de xwe veşartine û li gel wan hatine.

### Zilamek Çînî dane ber kêran

Ew penaberên ku bi rêya wê grûbê hewl dane derbasî Birîtanya bibin, ne tenê Kurd in. Kesên ji welatên din ên cîhanê û bi taybet jî ji parzemîna Asyayê ne. Mînak, yek ji wan 13 Kurdên ku hatin cezakirin, bi kêrê êrişî zilamek Çînî dike û 10 kêran lê dide. Zilamek Çînî ji kampek taybet girêdayî wê grûbê, di nava daristanek a Brûkselê de radibe û xwe digihêne nava bajêr. Lê grûb lê digere û dema di dikanek a gûlfiroşan de wî dibînin, yek ji wan Kurdan wî îxtiyarî dide ber kêran. Ew zilamê Çînî namire, kesên ku ew bûyer pêkanîn nas dike û dide girtin. Ev jî dibe destpêka girtina 13 Kurdên din.

Şeva 17'ê Sibatê, 10 Kurdên din bi tometa qeçaxçîkirina bi mirovan û tê gûman kirin girêdayî heman grûbê bin, li Belçîka tên girtin. Ev jî grûba herî mezin a qeçaxçiyên Kurd e ku heta niha li welatekî Ewrûpa tê girtin û cezakirin.

Herwiha li gor biryarek a dadgeha bajarê Bruxxe ya Belçîka, 4 Kurd (2 ji başûr û 2 rojhilatê Kurdistanê) cezayê 1 sal heta 18 meh girtîgeh, li wan hatiye birîn.

Li gor nûçeyek a Ajansa Nûçeyan a Belçîka (Belga) yek ji wan 4 kesan, tebaxa borî li benzînxaneyek a li ser rêya E-40 a ku ber bi Birîtanya ve diçe, hatiye girtin û 3 penaber li gel bûn û bê nasname bûn. Di lêkolînên despêkê yên polîsan de, kesên hatin girtin bi hemû awayî red dikin ku qeçaxçî bin, lê li gor Ajansa Belçîka, piştre derdikeve holê ku 3 kesên din jî alîkarê wan in.

Dadgehê biryar daye ku 4 Kurdên hatine girtin, birê 5.500 Euro wekî ceza bidin dewleta Belçîka. Divê niha ji pêncan 1'ê wî pereyî bidin û dema hatin azadkirin jî, ew pereyê mayî bidin.




Li rawestegeha kamyonan, penaberan di cihên taybet ên kamyonê de vedişêrin û rêdikin Brîtanya

**Li gor agahiyên polîsên Belçîkî ev 14 Kurd ên bazirganên mirovan, ni navbera salên 2009-2011'an de 160 grûbên penaberan ber bi Brîtanya ve rêkirine**

## Çîrokên balkêş ên wê grûbê

Penaberên dixwazin ji Belçîka yan ji Fransa ber bi Birîtanya ve biçin û li ser sînor tên girtin, bi rêya kamerayê tên dîtin. Ev kamera zêdetir amêrek a lêgerînê ye ku polîsên ser sinorê wî welatî bikartînin û bi wê sedemê çi kesê xwe di wesayîtê de veşartibe, tê dîtin. Ew amêr bi tirêjê kar dike û wekî di wî wêneyê li jora we de derdikeve, nîşanê mirov dide ku ew kesê xwe veşartî ketiye kîjan cihê wesayîtê.

Gundê Asse bi fermî dikeve sinorê parêzgeha Brabantî Flamî. Lê gelek nêzî Brûkselê ye. Mirovên wî gundî li ser wê 'Grûba Kurdan' çîrokên ecêb dibêjin. Yek ji wan behsa wê yekê dike ku di dema xwe de polîsên navçeyê ketin bin çavdêriya parkekê û li wê derê bi dizî temaşeyî wan kirin û ji bo bizanin ew grûb bi çi ve mijûl e. Dema ew Kurd bi wê yekê dizanin ku çend polîsan xwe di otomobîlekê de bêdeng kirine û çavdêriya wan dikin, diçin û li cama wê otomobîlê didin. Piştre bi dest bal dikişînin ser polîsan ku ji wê derê biçin. Polîs jî bi gotina wan dikin. Pîremêrek ji gundê Asse dibêje: "Li cihê ku polîs wan bigirin, darê xwe datînin ser milê xwe û direvin!" Lê dibe ku polîs ji bo lêkolînê li ser wan bikin nexwestibin wan zû bigirin.

# “Ji bo vegera min hinek astengî hene”

▶Berevajî çapemeniya Tirk, ne Kaya û ne jî Çamlibel niha vedigerin welat

**Mehmet Sebatli**

Piştî ku Sekreterê Partiya Sosyalîst a Kurdistanê (PSK) yê berê Kemal Burkay bi rêya Rûdawê û çendîn dezgehên din daxuyand ku ew dixwaze vegere welat, di çapemeniyê de navên Yaşar Kaya û Yimaz Çamlibel jî derbas bûn, weke ku ew jî amade ne vegerin welat. Yaşar Kaya ku di salên 90'ê de Serokê Parlamena Kurdistanê li Derveyî Welat (PKDW) bû, derbarê guftûgoyên li ser vegera xwe ya welat de pirsên Rûdawê bersivand û got ew dixwaze vegere, lê beriya hilbijartinan venagere.

Di vê serdema beriya hilbijartinan de tansiyona siyasetê li Tirkiyê çiqas diçe germ dibe. Beşekî çapemeniya Tirk ku nêzikî siyaseta AKP'ê tên dîtin, ev du hefte ye behsa vegera welat a çendîn siyasetmedar û nîvîskarên Kurd ên li Ewrûpa dijîn, dike. Yek ji van siyasetmedaran, Yaşar Kaya ji Rûdawê re ragihand ku 18 sal in ew li derveyî welat dijî, temenê wî gihaye 74'an û dixwaze temenê xwe yê mayî li welatê xwe derbas bike, lê got, “Ji bo vegera min hinek astengî hene. Ez beriya hilbijartinan venagerim.”

### Li Ewrûpa êdî xebata siyasî nema

Yaşar Kaya piştî ku xebatên Parlamena Kurdistanê li Derveyî Welat bi dawî bûn, li bajarê Kolnê niştecîh bû û dema xwe bi nivîsandina pirtûkan derbas dike. Kaya ji ber nexweşiya dil heta niha 3 car ameliyat bûye û pirsgirêka xwe ya tendirustiyê yek ji girîngtir astenga li pêşiya vegara xwe nîşan dide. Kaya daxuyand ku heta niha ne pirsgirêka Kurd hatiye çareserkirin û ne jî dewlet bûye dewleteke demokratîk û wiha dom kir. “Lê li Ewrûpayê jî ti dezgeheke me nema. Ne PKDW, ne jî dezgehên berê yên bi bandor êdî tune ne. Mirov dikare bêje ku êdî li Ewrûpa karê girîng nemaye. Êdî navenda xebatên siyasî welat e. Gel li wir e, em jî li vir in. Eger em siyaseta vî gelî bikin, divê em di nava vî gelî de cîh bigrin.”

“Rewşa tenduristiya min nahêle ez siyasetê bikim”

Kaya destnîşan kir ku ew naxwaze ji van gotinan wateya 'vedigere ji bo siyasetê bike' bê derxistin û wiha lê zêde kir. “Rewşa tenduristiya min rê nade ku ez niha karê siyasetê bikim. Lê eger tenduristî nebe pirsgirêk, ez amade me ji bo berjewendiyên gelê xwe siyasetê bikim.”

Piştî ku me banga Hevserokê KCD, Ahmet Turk ji bo Kemal Burkay, ku gotibû, “Bila Burkay bê di nava refên KCD'ê de siyasetê bimeşîne” bibîrxist û helwesta wî pirsî, Kaya got: “Banga birêz Ahmet Turk bi wate û rûmet e, lê ez naxwazim bi wan re siyasetê bikim” û sedemê vê jî wiha anî ziman. “Eger ez siyasetê bikim, wê di nava partiyeke liberal de ku berê xwe daye Ewrûpayê, bikim. Herwiha eger ez karibim siyasetê bikim, ez ê jî bo berdewamiya rêvekirina demokratîk bikim.”

### Astenga li pêşiya vegera Kaya: Doza PKDW'ê

Li gor daxuyaniyên Yaşar Kaya, li pêşiya vegera wî, li dadgeheke Enqerê, Doza PKDW'ê heye û heta ev doz bi dawî nebe ew nikare vegere. Kaya wiha axivî: “Li himberê min 443 dozên çapemeniyê hatin vekirin, hemû jî di sala 2003'an de bi dawî bûn, lê doza ku di Dadgeha Ewlekariya Dewletê (DGM) ji bo serokatiya min a PKDW'ê hatibû vekirin, hê didome û ti biryarek erênî derneketiye. Dema ku Serokwezîr Erdogan ji bo vegerê bang li min kir, ez bawer dikim haya wî jî ji vê dozê tune bû. Lê eger ez ciwan bûma û tendirustiya min di cîh de bûya, min ê hertişt bida ber çav û ez ê vegeriyama.”

Kaya di dawiya axaftina xwe de destnîşan kir ku ne ji aliyê hikûmeta AKP'ê û ne jî ji aliyê rayedarên dewletê ve ji bo vegera wî ti bang û daxwazî nehatine kirin û got ew beriya hilbijartinan ti carê venagere û eger piştî hilbijartinan efûyeke giştî, an jî gavên demokratîk bên avêtin û ti astengî li pêşiya wî nemînin, ew ê biryara vegerê bide.



## “Li ser navê me propagandaya AKP'ê dikin”

Nivîskar Yimaz Çamlibel jî ragihand ku ew venagere û derbarê vegera wî de rojnameya Tirk, Zamanê gotinên wî şaş belav kiriye. Çamlibel ev heşt sal in ku ji ber pirsgirêkên huqûqî ji welat derketiye û li Almanya li bajarê Wuppertalê dijî. Çamlibel ji Rûdawê re ragihand ku li himberê wî çendîn doz bi dawî bûne û ji wan dozan dadgehê cezayê girtîgehê daye wî û herwiha niha li himberê wî 10 dozên din jî dimeşin. Nivîskar Çamlibel destnîşan kir ku ew bixwaze jî ne mimkûn e niha karibe vegere welat û wiha dom kir. “Mesele ne tenê veger e; dema em vegerin wê kî me biparêze. Gelek nijadperest hene, Ergenekon heye, hevûdu dikujin, wê çawa me nekujin? ”

Çamlibel bibîrxist ku ji rojnameya Zamanê kesekî derbarê vegera wî de pê re axiviye, lê tiştê ku wî gotiye neweşandine: “Min negot ez vedigerim. Lê wisa weşandin. Gilî û rexneyên min gotin neweşandin. Dixwazin beriya hilbijartinan li ser navê me propagandaya AKP'ê bikin û navên me bikarbînin. Niha ji bo min ne dema vegerê ye.”

# Kurd û Ereb “roja hêrsê” ya Sûriyê li Londonê çêdikin

**Besam Mistefa** Hewlêr

Revenda Kurd li Brîtanya bi hevkariya hejmareke çalakvanên Sûriyê yên girêdayî tevahiya mezheb û neteweyan li pêşiya balyozxaneya Sûriyê li Londonê her roja şemiyê kom dibin û heta hilweşandina desthilata Beşar Esad li Sûriyê nasekinin. Yek ji amadekarên çalakiyê yê Kurd ragihand: "Bê alîkariya Kurd û Ereban zehmet e rêjîma dîktator bikeve." Nivîskarekî Ereb jî dibêje: "Çalakiyên bi vî awayî baweriyê di navbera Kurd û Ereban de bihêztir dikin".

Piştî serkeftina serhildanên Misr û Tunisê û belavbûna wan li gelek welatên Erebî wek Yemen û Lîbyayê, êdî li her welatekî îhtimala wê yekê heye ku di her demekê de serhildan dest pê bikin. Li Sûriyê jî nîşanên serhildaneke girseyî hêdî derdikevin. Berî çend rojan li taxeke Şamê bi sedemê ku polîsan li hevwelatiyekî xistibûn, nêzîkî 2 hezar kes li wir kom bûn û li dijî desthilatê slogan avêtin, lê wezîrê navxwe yê Sûriyê bi xwe hat û xelk aram kirin û soz da polîsên tawanbar bên ceza kirin.

Serokê Hikûmeta Rojavayê Kurdistanê li Derve Cewad Mela, bo Rûdawê daxuyand ku wan û çend çalakvanên Ereb li Brîtanyayê biryar dane ji 26'ê Sibata 2011'an pêve her roja şemiyê li pêşiya balyozxaneya Sûriyê li Londonê bicivin û nerazîbûna xwe pêşan bidin heta "serkeftin û hilweşandina rêjîma zordar a Beşar Esad." Cewad Mela got: "Biryar e hinek Ereb jî tevlî çalakiya me bibin. Rêjîma Esad rêjîmeke tûnd û hov e û eger Kurd û Ereb bi hev re serî nehildin, zehmet e bikeve." Lê Mela gazin ji Erebên Sûriyê kir û got: "Herdem li hundir û derveyî Sûriyê kesên ku himber vê rêjîma hovane derdikevin Kurd in, heta di çalakiyên me yên li vir de jî Ereb pir kêm beşdar dibûn. "Mela diyar kir ku niha serdema şoreşên ciwanan destpê kiriye: "Çalakiya me ji bo hundir îşaretek e da xwe amade bikin. Em êdî vê rêjîmê qebûl nakin, ev dehan sal e gelê me di bin zordariyê dijî û heman hizb û malbat Sûriyê birêve dibe û rê nadin kesî din bê ser desthilatê. Êdî bes e ev hinek kes 30-40 sal in li derveyî welat in û hê xizmên xwe nedîtine."

### Çalakiya me ji bo gelê Sûriyê îşaretek e ku li hundir xwe amade bikin


Cewad Mela

### Çalakiyên bi vî awayî baweriyê di navbera Kurd û Ereban de bihêztir dikin


Ebdulrezaq Îd

Ronakbîrê Ereb ê opozîsyonê Ebdulrezaq Îd jî ragihand ku çalakiyên protestoyê li derve baş in û eger li hemû paytextên welatên Ewrûpayê bên kirin hê baştir e: "Çalakiya Londonê baweriyê di navbera Ereb û Kurdan de bihêztir dike. Berî demekê ji aliyê navendeke çandî ya Kurdan hatim vexwendin û min behsa rola Kurdan wek pêşengên karê demokrasiyê li Sûriyê kir."

Îd diyar kir ku çalakiyên li derve morala ciwanên li hundir bihêz dikin: "Bê guman hundirê Sûriyê meydana sereke ya kar e, lê kar û çalakiyên li derve morala xelkê Sûriyê bihêz dikin û ji wan re dibin alîkar, lê hê opozîsyona Sûriyê nekariye hemû hêza xwe bixe tevgerê. Herdem Kurd tenê radibin û bacên mezin didin, lê pêdiviya guherînên demokratîk li Sûriyê bi hemû gel, pêkhate û netweyên wê heye. Divê Kurd û Ereb bi hev re û mil bi mil dakevin cade û kolanan û serhildanê li Sûriyê bikin."

Hinêr Selîm li nêzîk mala Picasso behsa huner û sînemayê dike:

# Bi qasî goşt, pêdiviya Kurdan bi fîlman heye

▶Îsraîliyan fîlmê "Newala Guran" qedexe kir, lê dibe ku Kurdan ji bo temaşekirinê 10 milyon Dolar dabin.

▶Sînemaya Kurdî heye, lê gelek tiştên pîs jî hene ku medya li Kurdistanê navê sînemayê li wan kiriye.

**Rûdaw: Fîlmê te yê dawî 'Eger bimirî ezê te bikujim' gihîşt ku?**
**Hinêr Selîm:** Xilas bûye û beşek jê bi fransî ye. Fîlm behsa ciwanekî Kurd dike ku li Parîsê li benda dergistiya xwe ye, lê beriya ku bê ew dimire. Hevalekî wî Fransî ye û kesî nas nake, ew termê ciwanê Kurd dişewitîne û xweliya wî li cem xwe hildigire. Li dawiyê keç digihe û li xweliya dergistiyê xwe digere.

**Navê fîlm hinekî ecêb e, ji ber çi?**
Di salên 60'an de ez zarok bûm û mala me ji bajarê Akrê reviya bûn Bilê, li wir çemê Zê heye û min jî di nav de xwe fêrî melevaniyê dikir. Dayika min digot eger tu bixeniqî ez ê te bikujim.

**Cudahiya Kurdan di fîlmên te de li gor fîlmên Kurdî yên din ew e ku herdem tu wan wek gelekî modern nîşan didî. Gelo sedemê vê yekê ew e ku li Parîsê dimînî?**
Rast e. Kurdistana min a li Parîsê hinek dost û bîranîn û xewn in. Dixwazim behsa pirgirêkên îro li cîhaneke global bikim, îro jî Kurdên modern hene. Lê ev nayê wateya ku ez li dijî jiyana gundîtiyê me, nexêr.

**Sînemaya te li derveyî Kurdistanê ye. Kurdistanê tînî û li derve nîşan didî. Qet hatiye bala te, di fîlmên te de Kurdan bibî hundirê Kurdistanê?**
Li Kurdistanê hinek kesên wek Ehmed Salar dizanin ku ez di sala 1991'an de bi pereyên xwe çûm wir û ji bilî karên mirovî, min fîlmê Bostek Sînor (Şêro) çêkir û ew yekemîn fîlmê min bû li Kurdistanê.

**Pir caran derhênerên Kurd an biyanî di fîlman de, Kurdan weke mirovên guneh pêşan didin. Bazara vê yekê jî li Ewrûpa heye.**
Her kes azad e û bi kêfa xwe ye, ti desthilata min nîne biryar bidim ev baş e û ew xerab e. Êdî şerm dikim herdem bêjim Kurd sitembar in. Dizanim rewşa me ne baş e, lê ev nabe sedem ku em kar nekin. Fîlm wê di 23'ê Adarê de bê belavkirin. Ez bi rêya fîlmên xwe ji xelkê re dibêjim ku Kurd ne kevir in ku ji cihê xwe neleqin, Kurd jî diguherin û dibêjim keremkin herin Kurdistanê û bi çavê xwe bibînin. Fîlmên min xeyala min e û ew Kurdistan jî Kurdistana min e, dibe di rastiyê de nebe, lê di xeyala min de heye û dixwazim Kurd wisa bin.

## Kurdbûn ne şanazî û ne şerm e

**Tu herdem pêdagir bûyî ku tu ne Kurdistanî û Îraqî, tu hest nakî ku ji ber vê yekê girîngiyeke zêde li fîlmên te nehatiye kirin?**
Naxwazim bêjim ez qurbanî me, ez xweperest im û ji xwe hez dikim. Hezkirina min a Kurdistanê ji hezkirina min bi xwe tê. Dixwazim li Hewlêrê rûnim û biyaniyek ji min re nebêje bi vî zimanê neaxive ji ber hebûna te nîne. Dixwazim azad bim û xuşk, bira û miletê min azad bin, ev jî tiştekî xwezayî ye û ti qehremanî jî tê de nîne. Li ser vê meseleyê Ereb hatin û dixwestin li min bidin, min got eger Îraq bêje bibûrin bo 80 salên hovîtiyê, wê demê ez ê nerîna xwe bêjim. Îraqê daxwaz ji min nekiriye bibim Îraqî û min jî daxwaz nekiriye. Ez ji Akrê me keko. Ne qenc im û ne pîs im, qet şanaziyê nakim ku Kurd im û qet jî şerm nakim ku Kurd im. Kurd im û hew! Mirov şanaziyê bi tiştekî dike ku bi xwe çêkiribe. Rêza her mirovekî digrim, lê kesên ku rêza miletê min negrin, ez jî rêza wan nagrim.

**Bi baweriya te îro tiştek heye bi navê sînemaya Kurdî?**
Îro fîlm hene ji wan re dibêjin fîlmên Kurdî, miletek jî heye bi navê Kurd û fîlm çêkirine, wate sînemaya Kurdî heye.

**Kîjan fîlmê Kurdî heye ku te xwestiye navê te wek derhêner li ser bûya?**
Fîlmên min, lê ev nayê wateya ku fîlmên min ji yên kesên din baştir in.

**Dibêjin heta niha jî fîlmên Kurdî yên festîfalan in û nebûne filmek ku di sînemayên cîhanê de pereyan peyda bikin. Sedema vê yekê çi ye?**
Ji bo vê yekê hinekî pêwîstiya me bi demê heye, lê wê ew roj bê.

**Çi pêwîst e?**
Fîlm tên kişandin, lê ne temaşevan û ne sînema heye!

**Te got sînemaya Kurdî heye, gelo fîlmên Kurdî ji bo nasandina Kurdan çi bandora wan heye?**
Sînemaya Kurdî heye, lê li kêleka vê yekê tiştên pîs jî hene. Pirsgirêka me Kurdan jî ew e ku bê plan kar dikin. Ti bernameyek a me nîne ku em ê ji bo 4 salên bê çi bikin.

> Her dema mirov Hinêr Selîm dibîne, dixwaze behsa serxwebûna Kurdistanê bike, wî li Parîsê mala hunermendê mezin Picasso û qada wênekişandina wî pêşanî me da, Selîm got navê min 'Hinêr' binivîsin, "Dayika min ji min re gotiye ku tê wateya aza."

**Te bi xwe fikra wê yekê kiriye ku ligel yek-du derhênerên Kurd ên berçav, projeyekê pêşkêşî Hikûmeta Herêma Kurdistanê bikin û bêjin pêwîst e plana we bi vî awayî be?**
Min ew cesaret nîne, ji ber nikarim tiştekê bikim ku teqlîdê hemû tiştên din be. Ji bo tiştek cidî bê kirin, divê mirov bên perwerde kirin. Avakirina pirek yan xaniyek mezin hêsan e, lê ya mejî zehmet e. Dibe ku gotinên min hinekî hişk bin û dibe ku zêde jî bin, lê ez wisa têgihiştime ku li ti wezaretekê planên me nîne.

## "Film tiştek bingehîn e û divê em mirovên xwe perwerde bikin"

**Di kabîneya berê ya hikûmetê de, gelek rexne li ser rojnameyanan hatine nivîsandin ku çima hikûmet ewqas pere ji bo filan filmê veqetandiye û pêwîst bû li cihê wê yekê dibistanek ava kiriban...**
Ez di wê baweriyê de me ku çawa pêwîstiya xelkê bi zelete û goşt heye, ewqas jî pêwîstî bi filman heye. Film beşek ji çand, mejî û perwerdeyê ye, tiştek bingehîn e û divê em mirovên xwe perwerde bikin. Ez dizanim gelek pirsgirêkên me hene, lê ligel dagirtina zikî pêwîst e em mejî jî dagirin. Me ew alî piştguh xist û me mirovek parazît dirust kir, wekî modela Urdûn û Sûriyê.

**Li Ewrûpa jî rêzefîlm û dramayên televizyonê bandorek zêde li ser jiyan û tevgera ciwanan dikin. Bi baweriya te rêzefîlmên baş û bi armanc wê bikarin bandorê li Kurdan bike?**
Bi baweriya min divê televizyonên Kurdî ji bo her pirsgirêkekê şevane bernameyên kurt amade bikin. Divê em ji zarokan dest pê bikin û eger em bikarin heta 4 salên din 6-7 endaman ji bo Wezareta Rewşenbîrî amade bikin, divê îro em 100 kesan rêkin zanîngehên cîhanê, ji van 100 kesan, dibe ku 10 kesên baş jê derkevin. Ev 10 kes dikarin piştî 4 salên din dam û dezgehan birêve bibin. Tiştek normal e ku endamên me nebûn, lê êdî ne normal e ku perwerde nekin.

**Niha li Kurdistanê pir ciwan hene ku gelek filmên baş dîtine û bazara firotina filman bazarek pir qerebalix e. Tu di vê derbarê de çi dibêjin?**
Ev nîvî baş e û nivî xirab e, ji ber ku dema hevwelatiyên welatekî ewqas pêşneketin û fikrekî rexnegir nebin, hemû tiştan werdigirin, ev jî hinekê metirsîdar e. Em fêrî tiştên kolektîf bûne.

**Pir caran dibêjin Selîm Berekat pir mezin e, lê mezinahiya wî ji bo çanda Erebî ye. Erê ev ji bo filman jî her wisa ye?**
Nexêr, James Joyce pirsgirêka Îrlanda bi hemû cîhanê da naskirin, lê bi îngilîzî nivîsand. Theodor Herzl tiştek nivîsandiye û fikra avabûna dewleta Îsraîl jî hebû. Ez hebûna Selîm Berekat pir erênî dibînim.

Wêne: Rûdaw

### Newala Guran (Kurtlar Vadisi)

#### Cihûyan qedexe kir Kurdan temaşe kir

Kurdên derve diçin temaşeyî filmekî faşîstên Tirk ê li dijî Kurd û Ewrûpiyan bi navê 'Newala Guran' ku di aliyê hunerî de jî di astekî pir nizim de ye. Tenê li Bakurê Kurdistanê çi nebe, 2 milyon Kurd temaşe kirine û li Ewrûpa jî qet nebe, Kurdan 10 milyon Dolar dane wî filmî.

**Dema aktorê wê filmê hat Hewlêr, rê nebû ku xelk wêneyê xwe ligel bigirin...**
Min li vê derê teklîf ji parêzerekê re kir ku dozê li ser vekin, ji ber gotinên wî şoven, pîs û nerast in. Li Almanya, Cihûyan ew film qedexe kirin.

**Wî parêzerî doz vekir?**
Nexêr dereng bû û nekir, lê divê li hemû cihê bê qedexekirin, ji ber ku fikrek xirab belav dike. Kurdan nîşan dide ku ciger, gûrçîk û nav zikê zarokên Ereb didizin û ligel Cihûyan bazirganiyê dikin. Cihûyan şikayît kirin û ew film qedexekirin, lê Kurdan li Başûrê Kurdistanê wêneyên wê filmê daliqandibûn, ev jî ne nezanîna gelê me ye.

**Li Hewlêr Asayîşê ew film qedexe kir, tu wê yekê wek biryarek baş dibînî?**
Ez ne ligel qedexekirinê me, lê pêwîst bû çapemeniyê boykot kiriban yan jî jê bêdeng bûna. Pêwîst bû ragihandinê hestek ligel xelkê çêkiriban ku bi xwe temaşe nekin.

### Hunermend Kawa behsa stîlên strangotinê dike:

# Nabe resenetiya strana Kurdî bê jibîrkirin

**Ebdullah Nihêlî** Duhok

Hunermendê Kurd Kawa li gundê Palas ê girêdayî Mûşê ji dayik bûye; 11 xwişk û birayên wî hene û di malê de yê biçûk e. Hunermend Kawa di hevpeyvînek a ligel Rûdawê de behsa çend aliyên jiyana xwe kir ku di demekê de li dibistan û mizgeftê dixwend, lê nekarî ti ji wan biqedîne. Heta herî dawî di temenê 15 salî de ligel Koma Mûzîkê ya Mûşê dest bi stran gotinê dike û sala 2000'an jî dibe endamê koma Berxwedan.

## Bi gotina dayika xwe bû stranbêj

Ev hunermend ji ber rol dîtina di şanoya Kawayê Hesinkar de, sala 1996'an nasnavê Kawa wergirtiye, lê li ser karê şanoyê berdewam nebû û dest bi strangotinê kir. Sedema wê yekê jî dayîka wî ye: "Dayika min rojekê ji min re got; ez ê şîretekê li te bikim û piştî mirina min jî jibîr neke. Eger tu bixwazî wekî ciwanek serbilind ji min hez bikî, divê tu dengê xwe bêxî xizmeta hunera Kurdî û wekî Evdalê Zeynikê, Weso û Şakiro bibî xwediyê navek mezin û stranan bêjî. Li ser gotina dayika xwe, min ev rê hilbijart." Kawa heta niha 4 caran serdana Herêma Kurdistanê kiriye û konsera wî ya dawî ligel hunermend Alîn li herêma Behdînan bû: "Ez bi Kurmancî stranan dibêjim, ez wisa dibînim ku heskiriyên min zêdetir li Duhok, Zaxo û Akrê hene."

## Cudahiya konserên li Kurdistanê û Ewrûpa

Bi baweriya Kawa ew konserên li Kurdistan û Ewrûpa saz dike, pir ji hev cuda ne; "Li konserên Ewrûpa hinek caran 5 hezar kes beşdar dibin, lê li Kurdistanê xelk ji konseran hez nakin. Min û Alînê li Duhok, Hewlêr, Akrê û Zaxo 4 konser lidarxistin, lê wekî pêwîst xelk beşdar nebûn." Kawa xwediyê gelek berheman e û bi hemû stranên xwe serbilind e; "Eger ne karek profesyonel be, ez nakim." Lê zêdetir ji albûma 'Şox û Şeng' razî ye. Wî bi pêwîst zanî ku bi rêya Rûdawê sipasiya kesên arîkariya wî kirin bike. Kawa derbarê stranên ku zêdetir pê hatî naskirin dibêje: "Gelek stranên min hene, lê bi baweriya min ên ez zêdetir li Başûrê Kurdistanê pê hatim naskirin, Newroz û Nazê ne."

## Zîndankirina li ser strangotinê

Kawa li ser strangotinê rastî gelek astengiyan hatiye. Di sala 1993'an de li ser strangotina bi zimanê kurdî, li Tirkiyê du salan hatiye girtin. Piştî ku hat rizgarkirin, tê Ewrûpa. Ew hunermend zêdetir di konser û boneyan de cilûbergên Kurdî li ber xwe dike. Kawa vê yekê wek şerefekê dibîne û dibêje: "Ez gelek ji cilûbergên Kurdî hez dikim. Nabe ku em Kurd resenatiya xwe jibîr bikin, cilên Kurdî ji bo min şerefek mezin e."

## 2 demjimêran di nava berfê de maye

Ev demeke li Başûrê Kurdistanê hinek keç bi stîlên nûjen stranan dibêjin, Kawa nerîna xwe li ser wan derbirî û got: "Bila stranbêjên bi hemû stîlan hebin. Ez pê kêfxweş dibim, lê nabe resenetiya strana Kurdî bê jibîrkirin." Kawa derbarê serdana xwe ya dawî ya Başûrê Kurdistanê de got: "Ez li gelek cihan geriyam, lê ji hemû demê xweştir dema wênegirtina ji bo klîba me ya ligel hunermend Alîn a li çiyayê Pêrs bû, em 2 demjimêr di nava berfê de man, birastî rojeke û nayê ji bîr kirin."



# "Genetîka Amedê bi min re heye"

**Rûdaw (Amed) -** Zilan Odabaşi ne tenê bi xweşikiya xwe bala rayagiştî kişand ser xwe û xelatan wergirt, ew herwiha di leyîstina fîlman de jî serkeftî ye. Zîlan piştî leyîstina di şeş rêzefîlman de, di fîlmekî sînemayê de, fîlmê Yusuf Çetîn ê bi navê Qirêj de ku li ser mijarên cerdevanî û mijara jinê hatiye kişandin û wê 4'ê adarê bê nîşandan, rolê sereke leyîstiye. Jiber ku destgirtiyê wê lê îxanetê kiriye, baweriya Zîlanê êdî bi mêran nayê. Ji bo wê ne pere û ne jî bedewiya mêran girîng e, lê, "Mêrên dilê wan bi hestan tije, dilsoz û zîrek bala min dikişînin."



Zîlan Odabaşi van rojan bûye yek ji mijarên herî girîng di çapemeniya Tirk de. Piştî Milliyet Sanatê, kovara bi ser rojnameya Akşamê, Siesta roja duşemê bi Zîlan Odabaşi re hevpeyvînek dirêj weşand. Zîlanê dibêje ku ji bo leyistina rêzefîlm û fîlmê sînemayê gelek teklîfan distîne: "Ez bêhtir dixwazim di fîlmên sînemayê yên drama yên civakî de bileyîzim. Eger naveroka fîlm xurt be, çi lazim bike ez dikim. Dayîka min piştgirî dide min, lê aliyê bavê min carina hin tiştan qebûl nakin. Ez jî di kesayeta xwe ew genetîka Amedê dibînim."

Zîlan di demên xwe yên vala de fîlman temaşe dike, pirtûkên felsefe, psîkolojî û siyasetê dixwîne û kurdî fêr dibe, "Ez niha baş bi kurdî fêr bûme." Xeyalek Zîlanê ya sînemayê jî heye: "Ez dixwazim rojekê rolê destgiriya Nietzche Lou Salome û jineke şoreşger bileyîzim."

Dawiya hefta çûyîn Zîlan ji bo galaya fîlmê nû 'Qirêj' çû Amedê.

**Biyografî**

Zîlan Odabaşi di sala 1988'an de li Amedê hatiye dinyayê. Bavê wê Yilmaz Odabaşi, helbestvaneke navdar e. Zîlan li Îzmîrê çûye dibistanê û li wir cara yekem di sala 2002'an de navê xwe belav kir. Wêneyên wê di çendîn katalog û kovarên jinan de derketin. Di sala 2006'an de jî dest bi leystikvaniya sînema û televizyonê kir. Zîlan di sala 2010'an de jî beşdarî "Pêşbirika Avon a Xweşikiyê "Rû bû û bû yekem. Di heman salê de Zîlan di nava 200 keçên ku berê hatibûn xelatkirin de kete rêza duyem. Zîlan Odabaşi heta niha di van rêzefîlman de rol standiye:

- *Lale Devri (2011 - Rêzefîlm) Bi navê Zehra*
- *Kuzey Ruzgari (2008 - Rêzefîlm) Bi navê Umut*
- *Buyuk Buluşma (2008 - Rêzefîlm) Bi navê Asli*
- *Zor Sevda (2008 - Fîlmê Tv) Bi navê Elif*
- *Acemi Cadi (2007 - Rêzefîlm) Bi navê Zumrut*
- *Ceviz Oynamaya mi Geldin (2007, Fîlmê Tv) Bi navê Gulsum*

## Bi jehra mişkan hevjînê xwe kuşt

# Laşfiroşekê di hembêza hevjînê xwe de dibîne


Mêrê xwe û jineke Ereb, li ser textê ku wê û mêrê xwe beriya 6 salan bihev re kirîbûn, tazî dibîne û...

**Dîmen Burhan** Silêmanî

Jineke Ereb malbatekê li Silêmaniyê serûbin kir: Du zarokan bê bav hîşt û dayika wan jî avête zindanê. Çiro dîmenê ku bi çavê xwe di odeya razana xwe û mêrê xwe de dît, qet jibîr nake: "Jiyana me pir xweş bû." Berî 6 salan evînê Çiro û Feryad gihandin hev û malek û jiyaneke xweş çêkirin. Çiro li kargeheke dirûtinê û Feryad jî li fermangeheke Silêmaniyê karmend bû, Çiro dibêje: "Ew ji min re her tişt bû, min zêde jê hez dikir." Çiro wiha axivî: "Rojekê min got ez ê herim mala xuşka xwe li Erbet, Feryad jî got eger hûn ne li mal bin, ez ê jî biçim mala bavê xwe." Çiro tevî zarokên xwe diçe Erbet: "Min li derî xist, mala xuşka min ne li mal bûn, ew bi serdan çûbûn Pêncwên."

### Ne cara yekem bû!

Çiro bi neçarî vedigere Silêmaniyê: "Min xwest biçim mala bavê xwe û wê şevê li wir bim, lê dema min telefona wan kir ew jî çûbûn serdanekê." Çiro demjimêr 16:00'an, 22'ê Kanûna 2010'an vedigere mala xwe û bextreşî jî ji wir destpê dike: "Deriyê hewşê vekirî bû û gava min xwest bi kilîtê deriyê hundir jî vekim, min dît ku vekirî ye û ez şaş mam, dûyê çigareyan jî hebû, tevî ku Feryad ji ber zarokan qet cigare li hundir nedikişandin, dû re dengê jinekê hat."

Çiro di cih de diçe odeya ku dengê jinê jê dihat: "Feryad û jineke Ereb tazî bûn li ser textê ku min û Feryad berî şeş salan bihev re standibû. Ez matmayî mam û min li Feryad nerî, jinika Ereb jî daxwaza pereyan kir. Feryad jî ji bo ku xwe paqij bide xuyakirin li ber çavê min lê hêrs bû û ew derxist derve." Çiro gava dibîne mêrê wê xayintiyê lê dike, hemû evîna wan a berê jibîr dike. Feryad dest bi girî û lavijan dike ku Çiro lê bibore û ew jî wiha jê re dibêje: "Eger ev cara yekem be li te diborim lê dema min Quran anî ji bo ku sund bixwe ev cara yekem e wisa dike, wî sûnd nexwar."

Gava Feryar amade nabe sûnd bixwe, Çiro fam dike ku berê jî xayintî lê kiriye, loma di dilê xwe de biryar dide wê şevê bike şeva dawî ya temenê mêrê xwe. Ew roj bîranîna jidayikbûna kurê wan ê mezin e. Çiro mêrê xwe dişîne sûkê da ku şêranî bikire: "Min got başe êdî dubare neke, here ji sûkê şêranî bikire." Dema Feryad tê û ahengeke xweş saz dikin, Çiro jehra mişkan tevî çayê dike û dide Feryad: "Jehra mişkan li mala me hebû, min sê çayên jehrkirî pê dan vexwarin, piştî re min deriyê odeya razanê lê girt."

**Min sê cayên jehrkirî pê dan vexwarin, piştî re min deriyê odeya razanê girt.**

Çiro herdu zarokên xwe dibe û diçe mala cîranan, piştî du demjimêrên tije dudilî û tirs her çiqasî dixwaze, lê nikare tenê biçe: "Ez tirsiyam min got eger ne miribe wê min bikuje û eger mirî jî be jê ditirsim. Min ji cîranê xwe re got elektrîka me kontakt dike, were berê xwe bidiyê." Dema bi hev re digihin hundir û Feryad dibîne, Çiro dike hawar û girî. Li nexweşxaneyê pizîş dibêjin ku Feryad jehr xwariye. Çiro dibêje bi rêya pismamekî Feryad eşkere bû ku destê min tê de hebû: "Ji ber berê ji pismamê xwe re gotibû pirsgirêkek wisa qewimiye."

### Ji kuştinê ne poşman e

Çiro niha li zindanê ye, hê dadgehkirina wê xilas nebûye. Herdu zarokên wê jî li mala bavê mêrê wê, bêyî dê û bav, dijîn. Nikare zarokên xwe jî bibîne, mala xezûrê wê nahêle. Şevekê beriya bûyerê xewneke nexweş dibîne: "Di xewna min de, mala me bi ser min de hildiweşiya. Ne poşman im ku min Feryad kuşt, xwezî min ew parçe parçe bikira ne ku wisa bi aramî bimira."

## Li gor amarên Herêma Kurdistanê

# Mêrên Germiyan zêdetir jina duyem anîne

▶Di du salên borî de 131 mêran li Hewlêrê û 27 mêran li Silêmaniyê jina duyem anîn

**Rewa Ebdulla** Hewlêr

Tevî wan şertên ku parlamentoya Kurdistanê piştî sererastkirina yasaya rewşa kesayetî bo rê dayin bi anîna jina duyem danîne, anîna jina duyem li Herêma Kurdistanê zêde dibe.

Li gor amara Civata Dadwerî ya Herêma Kurdistanê, di nava 3 salên borî de 1278 mêran jina duyem anîne. Berî sererastkirina yasayê di sala 2008'an de, 693 kesan jina duyem anîn, lê piştî sererastkirina yasaya rewşa kesayetî ya Îraqê li Herêma Kurdistanê li gor projeyeke Hikûmeta Herêma Kurdistanê, di sala 2009'an de 288 mêran jina duyem anîn, par jî 297 mêran.

Serjimêrî derdixe ku sererastkirina yasayê li ber zêdebûna fênomena anîna jina duyem bi tevahî rê negirtiye, di vê zêdebûnê de jî pişka şêr a Germiyan e, ku di 2 salên borî de 374 mêran li Germiyan jina duyem anîn e.


Li gor dîtina Civaka Dadwerî sedemê anîna jina duyem, enfal in: Mêr dimirin, jin bi tena dimînin.

Endama Sekreteriya Yekîtiya Jinên Kurdistanê Kinêr Ebdulla, bi gûman berê xwe dide vê serjimêriyê û bi baweriya wê rastiya rewşa civakî ya navçeyan dernaxe: "Bi rêya van amar û agahiyan nikarin bigihin encamekê ku bêjin li filan navçe û parêzgeha Kurdistanê ev diyarde kêm e yan zêde ye, ji ber hejmareke zêde ya mêran hawara xwe digihînin dadgehên li derveyî Herêma Kurdistanê bo anîna jina duyem, loma ev amar ne rast in."

Derbarê navçeya Germiyan jî, Kinêr got: "Dibe ku sedemên nexwendewarî, hejarî, olî û çandî ji bo bilindbûna rêjeya anîna jina duyem li Germiyanê, bûbin bingehek."

Bi dîtina Berdevkê Civata Dadwerî ya Herêma Kurdistanê Ebdulbasit Ferhadî, zêdebûna rêjeyê li navçeya Germiyan vedigere bandora operasiyonên Enfal li Germiyanê, ku ji ber Enfalkirina wisa bû ku hejmara jinên jinebî zêde bibe û jinebî jî bêtir ser hewiyê mêr dikin.

Amara anîna jina duyem di nava 2 salan de li Herêma Kurdistanê:

- Hewlêr: Di 2009'an de 81, di 2010'an de 50 zewac
- Silêmanî: Di 2009'an de 5, di 2010'an de 22
- Duhok: Di 2009'an de 29, di 2010'an de 24
- Germiyan: Di 2009'an de 173, di 2010'an de 201.

## Ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd

# CHP li rêya sêyem digere


Wêne: AKnews

Partiya Gel a Komarê (CHP) li bajarê Wanê li Bakûrê Kurdistanê konferansek sê rojî di bin navê “Gerana li pey stratejiya siyasî ya aştiyane” ji bo guftûgokirina li ser çareserkirina pirsa Kurd saz kir. Serokê CHP’ê Kemal Kiliçdaroglu jî tevlî wê konferansê bû û bi baweriya çavdêrên siyasî jî giringiya vê konferansê di wê yekê de ye ku di pêşerojê de kar bi biryarnameyekê bê kirin.

CHP dixwaze di hilbijartinên parlamentoya Tirkiyê yên ku wê di 12’ê Hezîrana bê de birêve biçe, dengê Kurdan bistîne. Prof. Dr. Ahmet Ozer ji Zanîngeha Sûleyman Demirel (Îsparta) yek ji beşdarên wê konferansê bû û bi baweriya wî CHP bêyî dengên Kurdan nikare bigihe desthilatê. Ozer ji Rûdawê re ragihand; “Ji bo CHP bigihe desthilatê, pêwîste giringiyê bide pirsa Kurd û oldaran. Hewl bide ku li gel wan aram bibe.”

**Rûdaw: Hûn bi fermî çûne nav rêzên CHP’ê?**

**Ahmet Ozer:** Nexêr. Lê CHP’ê girêdayî pirsa Kurd konferansek saz kir, ez jî beşdar bûm û ez jî derbarê çareserkirina pirsa Kurd de axivîm. Li Tirkiyê ew pêşhikûm hene, çi kesê ku tevlî civîna partiyek siyasî bibe, dibêjin çûye nava rêzên wê partiyê. Ez li rêveberiya zanîngehê kar dikim, hêj ji bo hilbijartinê nêzî 3 meh û nîv maye. Min biryara dest ji kar vekêşanê nedaye. Derbarê çareserkirina pirsgirêka Kurd de, çi aliyê daxwazê ji min bike, ez amade me arîkariyê bidim wan.

## Bêyî bidestxistina dengê Kurd û Misilmanan zehmete ku bigihe desthilatê

**Stratejiya CHP’ê ya ji bo aştiyê çi ye?**

Dibêjin CHP li wê herêmê (mebest Bakûrê Kurdistanê) ti dengan bi dest naxe û hevdem dengên kesên oldaran jî bi dest naxe. Kurd û kesên oldar di wê baweriyê de ne ku CHP giringiyê nade pirsgirêkên wan. CHP wekî partiya mûxalefetê ya herî mezin û ji bo bê ser desthilatê, pêwîste giringiyê bide pirsgirêka Kurd û oldaran. Hewl dide ku li gel aram bibe. Ango bêyî bidestxistina dengê Kurd û Misilmanan, yan jî bê bidestxistina cihên hatî ji bîr kirin, zehmete ku bigihe desthilatê.

**Di van salên dawî de tomara CHP’ê ya derbarê pirsgirêka Kurd de gelek baş nebûye, ev ji bo rastkirina wê siyasetê ye?**

Ji ber ku helwesta CHP’ê di van salên dawî derbarê pirsgirêka Kurd de ne zelal bû, Kurd bi tevayî ji CHP’ê veqetiyan û pişta xwe danê. Di serdema Deniz Baykal de bi wî awayî bû, lê îro serokatiya CHP’ê hatiye gûhertin. Piştî ku Kemal Kiliçdaroglu bû serokê wê partiyê, hewl dide ku vê yekê bigûherîne. Kiliçdaroglu bi xwe ji Dêrsimê ye û kurê malbatek Kurd a Elewî ye. Ji ber vê yekê pirsgirêkên wê navçeyê baş nas dike. Di vê dîtinê de jî hewl dide ji nû de bigihe Kurdan. Ji derveyî vê yekê pirsgirêka Kurd li Tirkiyê di navbera AKP û BDP’ê de asê maye. Despêkê AKP’ê di wê derbarê de tiştên ciwan destnîşan kir, lê piştre serokwezîr ji nîşandana îradeyê poşman bû. Zêdetir ji bo ku dibin bendê de bihêle, dest bi gotarek netewperest kir. Wekî ku li gel artêşê peymanek çekiribe. Ji bo piştî hilbijartina bê wekî dixwaze bibe serokkomar, yan jî ji bo sîstemê vegerîne sîstema serokatiyê. Li cihê ku, wekî daxwaz dike, dezgehên dewletê bigihin demokrasiyê, îro serokwezîr li gel wan dezgehan lihevhatinan çêdike û li gel wan bi hevre helwestan diyar dikin. Li aliyekî din jî hêza BDP’ê têra çareseriya vê pirsê nake. Ew pirsa ku di navbera AKP û BDP’ê de asê mayî, wekî rêya sêyemîn CHP dikare çareser bike. Ji ber ku eger CHP ne di nava proseyê de be, nikare pirsa Kurd çareser bike. Bi texmîniyên min, di vê qûnaxê de eger Kurd bi awayekê piştgiriyê bidin CHP’ê û derfetekê bidinê, wê tiştek bi sûd be. Dibe ku bipirsin û bêjin, çima wisan dibêjî? Di vê demê de texmîniyek wisan nîne ku Selahattîn Demirtaş bibe serokwezîr. Yan Receb Tayîb Erdogan, Kemal Kiliçdaroglu yan jî wê Devlet Baxçelî bibe serokwezîr. Devlet Baxçelî serokê MHP’ê ye û dîtinên wî yên derbarê pirsa Kurd de diyar in. Erdogan jî nekir. Despêkê helwestên wî baş bûn, lê îro xwe daye aliyekê, êdî hewla ji bo çareseriyê nade û dibêje, çawan be wê Kurd dengê xwe bidin min.

## AKP dibêje 6-7 milyon Kurd hene û ez nîvê dengên wan distînim, çima ez dengên rojava ji dest bidim.

Ango dibêje, 6-7 milyon Kurd hene û ez nîvê dengên wan distînim, çima ez dengên rojava ji dest bidim. Ji ber vê yekê ji bo çareserkirina vê pirsê pêngavan navêje. Li vê derê CHP dimîne, em di wê derbarê de CHP’ê pal didin. Em jêre dibêjin; ev pirsgirêk giring e. Hûn dibêjin, em ew partî ne ku me komar damezirandiye, xwe li beramberî wê pirsgirêkê wekî biyanî nebînin. Pêwîste hûn bikevin nava wê pirsgirêkê û çareserkirin girêdayî we ye. Rêveberî û serokatiya vê partiyê jî di vê derbarê de dest bi çend pêngavan kiriye. Ji ber ku ji nû de rêveberiya vê partiyê hatiye gûhertin. Ji ber vê yekê îro-sibe li benda pêngavan rawestandin zehmet e. Lê li bajarê Wanê sazkirina civînek 3 rojî ya bi tevlîbûna Kemal Kiliçdaroglu giringiya xwe heye û di heman demê de peyameke ji bo xelkê herêmê.

**Biyografî**

**Prof. Dr. Ahmet Ozer**

- Prof. Dr. Ahmet Ozer li sala 1960’an de li bajarê Wanê ji dayik bûye.
- Di sala 1979’an de peymangeha perwerdeyê li Wanê qedandiye. Li zanîngeha Haci Tepe di warê civaknasî û li zanîngeha Rojhilata Navîn jî di warê felsefeya siyasetê de du master bi dest xistiye.
- Di sala 1995’an de li zanîngeha Haci Tepe dîploma diktora bidestxistiye.
- Derbarê pirsa Kurd û pirsên din ên Tirkiye de çend lêkolînên teorî û pratîkî encam daye. -Niha li zanîngeha Sûleyman Demirel, ragirê kolêja Huner û Edebiyatê ye.

**Di nava CHP’ê de wekî dibêjin, baskê netewperest, yan Kemalîst, hene. Ev wan dîtinên we dipejirênin?**

Îro ev pirsgirêka CHP’ê ya herî giring e. Wekî we bal kişandî ser, di nava CHP’ê de demarek netewperest û Kemalîst heye. Di heman demê de kesên demokrat û alîgirên çareseriya pirsa Kurd jî hene. Di nava CHP’ê de kesên Kemalîst nikarin bi wê rêjeyê dengan bi dest bînin ku wê partiyê bigihînin desthilatê. Du gomanên wan ên mezin hene: ya yekem gomana sekûler û ya dûyem jî parçebûn e. Ez ji wan kesan re dibêjim, bi modelbûna Tirkiyê şerîetbûn derbas kiriye û derfeta Tirkiyê nemaye ku şerîet vegere. Di heman demê de Tirkiyê meseleya parçebûna bi koç kirin, yekîtiya berjewendiyan, yekitiya ayîn û hevsergeriyê derbaz kiriye. Kurd û Tirk bi hevseriyê têkelî hev bûne. Mînak, ne wekî Îraqê ye û hemû Kurd di bin sihbera Hikûmeta Herêma Kurdistanê li herêmekê civiyane. Îro li Tirkiyê bajarê Kurdan ê herî mezin ne Amed e, belkî Stenbol e. Li wî bajarî 4 milyon Kurd jiyan dikin. Ji ber vê yekê ji wî kesê Kemalîst re dibêjin, gomana parçebûnê şaş e û di heman demê de gomana şerîetê jî şaş e.

**Civîna li Wanê ji bo biryar dayînê bû, yan jî civîna li pey rastiyan bû?**

Di wê civînê de 10-15 pispor beşdar bûn. Herwiha nûnerên rêxistinên civaka sivîl tevlî bûbûn û ew ne endamên CHP’ê bûn. Ji ber wê yekê ew nikarin bi navê CHP’ê biryarê bidin. Di wê civînê de serok û arîkarên serokê CHP’ê amade bûn. Wê şandê siyaseta ku bigire pêşiya xwe pêşniyar kir ku di “Konferansa lêgerîna li pey siyaseta aştiyane” xiste ber çavan, lê ji bo ku pêşniyarên konferansê bibin siyaseta wê partiyê, pêwîste organên CHP’ê guftûgoyan derbarê wê yekê de bikin û biryarê li ser bidin.

**Di wê konferansê de we pêşniyara rakirin yan daxistina benda hilbijartinê kir. Erê berî hilbijartina ku meha Hezîranê pêk bê, hewldanên ji bo cîbicîkirina vê pêşniyarê wê hebin?**

Konferans derbarê wê pêşniyarê di wê baweriyê de ye ku berî hilbijartinê pêwîste koma CHP’ê li parlamentoya pêşniyara ji bo kêmkirina rêjeya benda hilbijartinê ya ji sedî 10 bo 5’ê bike, ji bo ku Kurd li parlamentoyê bi rêya partiyên xwe xwedî nûnertî be. Lê ev tenê bi CHP’ê nayê kirin. 100 parlamenterên wê hene û daxwaza piştgiriyê ji AKP’ê dike. Bêgoman BDP piştgiriyê lê dike. Ji ber ku ev bend ne demokratîk e û gûzariştê li dadperweriyê nake. Pêwîste bê rakirin û ev yek ji dîtinên wê konferansê bû. Di heman demê de jî dîtinek jîr û lojîk e. Lê AKP li dijî wê yekê radiweste ku li parlamentoyê Kurd nûnertiya xwe bikin. Ji ber vê yekê ez ne di wê baweriyê de me ku berî meha Hezîranê ev pêşniyar bê pejirandin.

**Wê demê wê çi çêbe?**

Carek din wê BDP bi namzetên serbixwe beşdar bibe.

**Ew guftûgo yan pêngavên ku CHP dimeshîne, heya hilbijartina meha Hezîranê ye, yan jî ev meseleyek stratejîk e?**

Ev meseleyek stratejîk e û ne heya hilbijartinê ye. Bi baweriya min wê piştî hilbijartinê rewta van pêngavan zêdetir bike. Berevajî, berî hilbijartinê CHP hinekê ditirse. Dibêje, eger hinek pêngavan li vê derê bavêjim, ez ê dengderên Rojava ji dest bidim. Lê lojîka vê partiyê ew biryar heye û wê piştî hilbijartinê hîn zêdetir giringiyê bidiyê. Ji derveyî vê konferansê pêşniyarek din jî kirin, tekez li ser wê yeke hatiye kirin ku divê ji niha û pê de têkiliyên xwe yên ligel Herêma Kurdistanê germtir bike û ligel partiyên li wê herêmê yên ku giringiyê didin gûhertinê, têkiliyên xwe xûrtir bikin. Zû-zû şandan rêkin wê herêmê. Ev jî di civînê de wekî pêşniyarekê hat pejirandin.

## CHP wê dengên BDP’ê nebe, zêdetir yên AKP’ê bibe

**Eger CHP li Bakûrê Kurdistanê deng bi dest bixe, wê li ser hesabê AKP, yan BDP’ê be?**

Ez ne di wê baweriyê de me ku ji dengê BDP’ê bibe. Zêdetir wê ji dengên AKP’ê û partiyên din bibe. Wek mînak, Partiya Demokrat heye, ji ber ku zehmet e wê partî biçe nava parlamentoyê, dengdêr wê dengê xwe bidin CHP’ê. Dîsan bi heman awayî partiya Saadet, Partiya HAS û HAK-PAR şansê wan ê çûyîna nava parlemento û derbazkirina bendê nîne. Dibe ku dengê xwe bidin CHP’ê.

**Erê CHP bi wê siyasetê hewl dide ku karta Kurdan ji destê AKP’ê derbixe?**

Nexêr, lê CHP wekî partiya tevayî Tirkiyê hewl dide ku li wê herêmê dengan bistîne û parlamenteran bibe parlametoyê. Ji bo pirsgirêka Kurd çareser bike, çi nebe hewl dide 10-15 parlamenterên Kurd piştgiriyê bidinê. Eger ew nebin, gotina “Ez ê jî pirsa Kurd çareser bikim” pir zehmet e.

*Hevpeyvîn: Hêmin Xoşnaw*

Bi rêya firokexaneya Hewlêrê bi tonan tînin

# Par 23 hezar kîloyên zêr derbasî Herêma Kurdistanê bûne

▶Li Kurdistanê bazara zêran fireh dibe û di şûna Dolar de xelk zêran hildigre

▶Welatê ku zêrê wî zêdebin ber bi sermayedarî ve diçe

**Barzan Mihemed** Hewlêr

Rêvebirê Kontrola Corên Gewheran li Herêma Kurdistanê Bekir Ezîz ragihand, par zêdeyî 23 kîloyên zêr bi rêya firokexaneya Hewlêrê derbasî Herêma Kurdistanê bûne. Aborîzan jî dibêjin ev li ser bilindbûna astê rewşa jiyanê ya li Kurdistanê amaje ye. Bekir Ezîz diyar kir, ji ber zêdebûna daxwaza hevwelatiyên Herêma Kurdistanê li ser zêr, anîna zêran zêde bûye û pêşbînî kir ku îsal hê zêdetir jî bibe.

Li gor serjimêriya Rêvebiriya Kontrola Corên Gewheran li Herêma Kurdistanê, di sala 2010'an de nêzîkî 23 hezar û 597 kîloyên zêr bi rêya firokexaneya Hewlêrê derbasî Hewlêrê bûne û li ser bazarên Herêma Kurdistanê hatine parvekirin. Cîgirê Serokê Sendîkaya Zêrîngiran Seyd Bekir Berzencî, daxuyand ku li Kurdistanê jî wek Îmarat û Hindistanê zêr cih ji diravan re nahêle: "Xelkê Herêma Kurdistanê êdî ji dêlva pere zêran hildigirin, loma jî salane gelek zêr tê Herêma Kurdistanê. Ev nîşana wê yekê ye ku êdî li Kurdistanê hejarî berbi nemanê diçe."

Li gor navbirî, sermayedarên Kurdistanê zêde baweriya wan bi pereyan nîne û bêtir pişta xwe bi kirîna zêr germ dikin: "Hinek sermayedar hene nêzîkî 20 kîloyên zêr kirîne, pere têk diçin û dişewitin, lê zêr herdem rewşa xwe diparêze û bi agir jî naşewite." Aborîzan anîna zêr bo Herêma Kurdistanê wek nîşaneke bilindbûna astê aborî yê xelkê Herêma Kudistanê wesif dikin. Aborîzan Eyûb Enwer dibêje: "Di vê serdemê de zêr giringtirîn sermayeya cîhanê ye û her welatê ku zêrê wê zêde be tê wateya ku ew welat berbi sermayedarî diçe, zêr herdem nirxê xwe tîne û wenda nake, ji ber ku astê aborî yê hevwelatiyên Herêma Kurdistanê berbi bilindbûnê ye loma daxwazeke zêde li ser zêr heye û ev yek qazanceke mezin dide sermayeya Herêma Kurdistanê."


Zêrên ku ji dervê tînin Kurdistanê ji ber ku daxwaziya gel zêde heye, di bazarê de namîne û zû tên firotin.

## Li Kurdistanê 1196 dukanên zêra hene

Li gor serjimêriya Rêvebiriya Kontrola Corên Gewheran li Herêma Kurdistanê, 1196 dukanên firotina zêr li Herêma Kurdistanê hene (450 li Silêmaniyê, 378 li Duhokê û 368 li Hewlêrê). Hinek welat nemaze Çîn û Hindistan daxwaz dikin, zêr bibe pîvana danîna nirxan li cîhanê û bikeve dewsa Dolaran, ji ber bi vî awayî aboriya cîhanê bêtir tê parastin. Îbrahîm Hesen (31) ligel jina xwe li bazara zêrîngerên Hewlêrê dixwest zêran bikire û got: "Hinek pereyên me hene, me dixwest zeviyekê bi wan bikirin, lê ji ber têra nirxê zeviyekê nedikirin em hatin bo parastina pereyên xwe zêr bikirin, ji ber hemû deman mirov dikare zêran bike pere û sûdê jê bibîne."

Li gor gotina zêrîngeran, zêrê ku tê Herêma Kurdistanê hemû jî zêrê xurû ye û eyara wê 24 e. Zêrînger Hacî Fewzî Edilqadir ragihand: "Bazirganên zêr di van herdu salên dawî de gelek zêr anîn Herêma Kurdistanê, ev jî tê wateya ku pere li Kurdistanê pir in. Baweriya xelkê jî wek berê bi Dolar nemaye, loma niha xelk ji dêlva Doleran zêran dikire, ji ber hilgirtina wan hêsantir e."

Bi navê çareserkirina pirsgirêka niştecihbûnê tên çêkirin û Ereb dikirin

# Ji sedî 25'ê muşteriyên xaniyên niştecihbûnê Ereb in

▶Ji ber ku Herêma Kurdistanê aram e bi hezaran malbatên Ereb ên ku rewşa wan a aborî baş e, tên û xanî û zeviyan dikirin û niştecîh dibin

**Barzan Mihemed** Hewlêr

Xwediyên projeyên niştecihbûnê eşkere dikin ku Erebên ji naverast û bakurê Îraqê ji ber xerabiya rewşa ewlekarî ya navçeyên xwe berê xwe dane Herêma Kurdistanê, kiryarên sereke yên projeyên wan in.

Rêvebirê Projeya Bajarê Xewnan Îbrahîm Ebdulla, amaje da ku wan di projeya Dream City (Bajarê Xewnan) de 1200 xanî çêkirine ku rûberê xaniyan ji 250 metroyan destpê dike heta 900 metroyan. Îbrahîm eşkere kir ku: "Ji sedî 25'ê xaniyên vê projeyê ji aliyê Erebên naverast û bakurê Îraqê hatine kirîn. Ev proje ku tên çêkirin berî pêkanînê ji aliyê hevwelatiyan tên kirîn, ew jî dû re bi nirxekî zêdetir difiroşin."


Ji sala 2003'an pê ve 37 hezar û 889 malbatên Ereb hatine Kurdistanê

Derbarê cudahîkirinê di firotina xaniyan de bo Kurd û neteweyên din bi taybetî jî Ereb, Îbrahîm got ew xaniyên xwe bê cudahî difiroşin: "Têkiliya me bi tedbîrên qanunî ve nîne, her kesek bixwaze xaniyan bikire em difiroşinê."

Yasaya (40), ku wek yasaya xanî û zeviyên Îraqî tê binavkirin û di sala 1971'an de derketiye, rê dide hevwelatiyên Îraqê li her cihekî Îraqê bixwazin xanî yan zeviyan bikirin, tenê bo Kurdên Şebek li Mûsilê qedexe bû. Li gor vê yasayê hevwelatiyên Ereb ên Îraqî dikarin li Herêma Kurdistanê niştecih bibin û ev jî vê yekê metirsiyeke mezin li cem rûniştevanên Kurdistanê çêkiriye.

**Li Hewlêrê kirîna xanî û zeviyan ji aliyê Ereban ve, metirsiyeke mezin li ser rûniştvanên Kurdistanê çêdike.**

Erebên ku li Herêma Kurdistanê niştecih dibin û xaniyan dikirin, bê agahdariya hêzên ewlekariyê nikarin xaniyan bikirin. Di vî warî de, çavkaniyeke ewlekariya Hewlêrê bo Rûdawê ragihand: "Erebên ku li Kurdistanê xaniyan dikirin kefalet ji wan tê standin û pişt re dikarin li Kurdistanê niştecih bibin, ti Erebek bêyî kefîl nikare niştecih bibe yan xaniyekî bikire."

Piraniya Erebên ku berê xwe didin Herêma Kurdistanê, rewşa wan a darayî baş e û li cihên herî xweş ên Hewlêrê xaniyan dikirin. Rêvebirê Projeya Bajarê Xewnan Îbrahîm Ebdulla got: "Ew naxwazin li taxên asayî niştecih bibin, lê li cihên herî xweş xaniyan dikirin."

Rêvebirê Projeya "Greenland Villa" endeziyar Saman Ehmed got ku ji sedî 15'ê villayên wan ji aliyê Ereban tên kirîn: "Hinek villa jî ji aliyê Kurdên ku ji derve tên, tên kirîn."

Li gor îstatîstîka Ofîsa Koç û Koçberan li Wezareta Navxwe ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê, piştî hilweşandina rêjîma Saddam di sala 2003'an de û heta niha 37889 malbatên Ereb ji başûr û naverasta Îraqê berê xwe dane Duhok, Hewlêr û Silêmaniyê "18406 malbat hatin Duhokê, 10065 malbat hatin Silêmaniyê û 9418 malbat jî hatin Hewlêrê."

# Gelo dawiya Diyarbakirsporê hat?




▶4 berpirsiyarên wezareta Navxweyî li ser dosyayên klûbê lêkolîn dikin

▶Eger rewşa bê rêvebertî bidome, wê Diyarbakirspor nikaribe tevlî maçan bibe

**Amed (Rûdaw) -** Rewşa Diyarbakirsporê ya xirab di dîroka xwe ya 43 salî de kete asteke herî cidî. Klûb ev meh û nîv e bê rêvebiri ye, di sezona nû de tenê yek maç biserketiye û gelek futbolvanên xwe winda kiriye. Di 22'yê Sibatê de ji Wezarete Navxweyî 4 lêkolîner çûn Amedê da ku li hesab û dosyayên klûbê binêrin û bo Dadgeha Sulhê raporek giştî amade bikin. Eger rewş wiha bidome û çareseriyek neyê dîtin, tê çaverêkirin ku di nava yek an du hefteyan de Diyarbakirspor êdî nikaribe beşdarî maçan bibe.

Piştî ku rêvebiriya Çetin Sumer xwe paşve kişand 3 kongreyên awarte hatin lidarxistin, lê ti encam ji van kongreyan derneket û rêveberiyeke nû ji bo klûbê nehat hilbijartin. Pisporên ku rewşa Diyarbakirsporê dinirxînin bal dikişînin ser wê yekê ku klûb di dîroka xwe de cara yekem e ketiye rewşeke wiha teng.

**Wiha bidome Diyarbakirspor nikare beşdarî maçan bibe**

Gerînendeyiya Komeleyan a Bajêr rewşa Diyarbakirsporê ya awarte ji Dadgehê re ragihandibû û dadgehê jî ji bo lêkolîneke berfireh daxwaziya mufetîşan kiribû û hefta borî ji aliyê Wezarete Navxweyî ve 4 lêkolîner gihan Amedê û di avahiya klûba Diyarbakirsporê de dest bi karên xwe kirin. Li gor rapora Gerînendeyiya Komeleyan a Bajêr, di transfera hinek futbolvanan de agahiyên ne rast hatine diyarkirin. Li gor agahiyên ku malpera fermî ya Klûba Diyarbakirsporê, www.diyarbakirspor.org ragihandiye, lêkolînerên ku di 22'ê Sibatê de hatine avahiya klûbê xebata xwe didomînin, lê, "Niha di klubê de ti kes tuneye ku karibe nûnertiya fermî bike û bi îmzeyan xwe karibe karên fermî birêvebibe.

Ev jî dibe pirsgirêk ku qedera klûba deyndar dikeve destê dadgehê. Herwiha kes tune amadekariyên sezona nû bike, ji bo klûb dest bi karekî bike divê rewşa niha bê zelalkirin û rêveberiyeke nû bê hilbijartin. Nebe wê Diyarbakirspora ku ev çend hefte ye bi futbolvanên Tîma A dikeve maçan, wê êdî nikaribe beşdariya maçan jî bike."

Nivîskarên diyarbakirspor.org'ê radigihînin ku, piştî maça Adanasporê dibe ku Diyarbakirspor êdî neçe deplasmanan.

# Di 303 deqeyan de 3 gol, 2 şût




**Bochum (Rûdaw) -** Futbolvanê Kurd ê di Tîma Bochûmê de dileyîze, Mirkan Aydin di sê maçên dawî de bala çapameniyê û ya temaşevanên futbbolê kişand ser xwe. Mîrkan di sê maçan de 3 gol avêtin û du şûtên ku bûne gol da hevalên xwe û yek jî penaltî ji bo tîma xwe bidestxist. Antrenorê Bochumê Friedhelm Funkel şanaziyê bi Mîrkan dike û dibêje, "Ev xort bi rastî jî zêde germ e."

Mîrkan Aydin sala borî ligel Vfl Bochumê peymanê îmze kir lê ji ber birîndariya wî ya çokê, demeke dirêj nekete nav kadroya 11'an. Mîrkan di vê sezonê de cara yekem di maça Arminia Bielefeldê de kete nav kadroya 11'an û du gol avêtin. Di maça Fortuna Dusseldorfê de Mîrkan dema xwest gokê bavêje qeleya Dusseldofê, leystikvanekî himber ling da ber wî û wî xiste erdê: Penaltî. Mîrkan di dawiyê de di maça Gruther Furthê de jî golê avêt, lê jiber ku hevalekî wî kerta sor wergirt, maç 1:1 bi dawî bû. Vfl Bochûm jiber ku îsal dîsa dixwaze vegere Bundeslîga 1, di hest maçên dawî de hê têkneçûye.



# Basketvanên Kurd ji şampiyoniyê re amade ne

**Bawer Çem** Amed

**Tîma Xortan a Basketbolê ya Şaredariya Baglarê, ji aliyê Federasyona Basketbolê ya Tirkiyeyê ve weke tîma herî baş hate bijartin. Tîma ku lîstikvanekî şand NBA'ê, niha xwe ji tûrnovayên Adarê re amade dike û armanca wê şampiyonî ye.**

**Tîma Xortan a Basketbolê ya Şaredariya Baglara Amedê, ji bo Semînera Perwerdeya Antrenoriyê ya herî baş hate hilbijartin. Tîma ku ji xortên Kurdan pêk tê, ji aliyê antrenorê herî baş ê Tirkiyeyê Hurşît Baytok ve, ders wergirtin. Basketvanên Kurd di semînera ku li Salona Sporê ya Lîseya Anadoluyê deh rojan dom kir de, ji aliyê Baytok ve pir hatin ecibandin. Antrenorê basketvanên Kurd Gokhan Yildirim ku derbarê serkeftina tîmê de ji Rûdawê re axivî, diyar kir ku tîma wan ji aliyê Baytok ve gelek hatiye ecibandin û wiha axivî: "Tîma me li vir weke tîma herî baş hate dîtin û weke pîlot hate bikaranîn. Wan antrenoriya xwe bi tîma me re kir. Piştî ku dîtin li Amedê evqas xortên bi zîrek, jîr û serkeftî hene, heyirî man."**



**Tîma baskatvanên Kurd di tûrnovaya sala borî de bû 2'mîna Tirkiyê**

### Ji tûrnûvayê re amade ne

**Tîma Basketbolê ya Baglarê ku ciwanekî weke Şerazim Cucuboga jê derketibû û bo tîma basketbolê ya NBA'ê ya Amerîkayê hatibû hilbijartin, niha xwe ji tûrnovaya basketbolê re amade dike. Tûrnova di meha Adarê de dest pê dike. Antrenor Gokhan Yildirim da zanîn ku ew dixwazin di vê tûrnûvayê de bibin şampiyona Tirkiyê û serkeftineke din bi dest bixin û gelek basketvanên jîr ên tîma xwe ji bo tîmên navdar transfer bikin.**



# Têkiliyên Tirkiye û Kurdistanê.. Ji hevdîtina min û Ozal ve dest pê kirin

**Kameran Qeredaxî**

Tam berî 20 salan, wisa çêbû ku nivîskarê vê nivîsê di damezirandina têkiliyên navbera serokên Kurd ên Îraqê û Komara Tirkiyê de rolek çaverênekirî bibîne. Îro ew têkiliya navbera Tirkiye û Herêma Kurdistanê di dema xwe ya zêrîn de ye. Berî her tiştî ev têkilî ji dîtinên Ozal ên berî 20 salan dest pê kir. Li vir ez ê hewl bidim hûriyên vê çîrokê vebêjim.

Çîrok ji hevdîtineke min a rojnamevanî ya li gel serokê koçkirî yê Tirkiyê Turgût Ozal dest pêkir û di nîva meha Sibata 1991'an di rojnameya El-Heyat de hat belavkirin. Wê demê helwestek rasterast û dijwar ji ber sedema dagîrkirina Kuwêtê wergirtibû û daxwaz dikir ku tedbîrên dijwar ji bo derxistina hêzên Îraqê bi zorê bigre ber çavan. Li gel destpêkirina amadekariyên leşkerî yên Dewletên Yekbûyî yên Amerîka (DYA) û hevpeymanan, Ozal rê da firokexaneya Incîrlîk, Amed û binkeyên din ên başûrê Rojhilat (Bakûrê Kurdistan-Rûdaw) ji bo êrişên esmanî yên li dijî Îraqê bikarbîne. Hikûmeta Tirkiyê li Amedê di bin sêwana Peymana Bakûrê Atlantîk de, navendên rojnamevanî ava kir ku bi dehan rojnamevan, nûçegihanên dezgehên ragihandinê yên Tirkiyê û biyanî çûn wê derê. Ez wekî nûçegihanê rojnameya El-Heyat du roj berî dest pêkirina êrişên esmanî bo ser Îraqê, giham Amedê.

Daxwazên nûçegihanên biyanî ji bo sazkirina hevpeyvînên li ser Ozal dibariyan. Berpirsê rêxistina daxwazan Kaya Toperî, şêwirmendê serokkomar bû, ji ber daxwazên zêde, tenê 20 deqîqe ji bo her nûçegihanekê danîbû. Min berî çend mehan nasîbû, wê demê hevdîtina yekem bû min li gel Ozal saz kir. Ez nêzî mehekê li Amed, çend bajar û bajarokên nêzî ser sînorê Tirkiye-Îraqê mam. Min têkilî li gel Toperî ve danî û min daxwazaa hevdîtinekê kir. Bersiv da ku divê ez ji bo hevdîtinê biçim Stenbolê. Min odeyek li otêla Hîlton a berambêrî wê otêla girêdayî Artêşa Tirk girt û hemû bi navê otêla Herbiye nas dikin. Ozal timî ji bo mayîna xwe di nava wê otelê de cihek taybet digirt.

Di roja hevdîtinê de, ez çûm Herbiye, heta ku dor giha min û ez çûm cihê Ozal ê taybet û min daxwaz jê kir ku li ser kûrsiyê li kêleka wî rûnim. Toperî jî li ser kursiyê li bermaberî wî rûniştibû. Min li ser maseya biçûk atlesek mezin a cîhanî dît. Ez matmayî bûm û dema daxwaz ji min kir ku ez rekordê bikar neynim, ji ber ku dixwest ez destpêkê bersiva pirsên wî bidim. Heta dema tomarkirina hevdîtina me ya rojnamevanî, danûstandinên me saetekê domand.

Ozal gotin bi wê yekê dest pê kir û got, tu dizanî ez Kurd im û ji ber wê yekê jî dixwazim guftûgoyên me bi eşkere bin. Pirsên wî hûr bûn û bi awayekî giham wê baweriyê ku ew bi hurî hatine amadekirin. Têkiliyên navbera du partiyên sereke, Partiya Demokrat û Yekîtiya Nîştîmanî çawa ye? Rastiya vê yekê ya yekem li ser rêbaza Neqşebendî û ya duwem jî ser bi Qadiriyê û çi bandor li ser wê têkiliyê heye? Têkiliyên Kurd û Tirkiyê di çi astê de ne? Herdu partî çawa tevgerê li gel PKK'ê dikin? Helwestên herdu partiyên Kurd hemberî Tirkiyê çi ne, wek dost dibînin yan dijmin? Gelek pirsên din û di her pirsê de çend pirsên din hebûn.

**Birêz serok, têkiliyên min li gel Barzanî û Talabanî hene û ez dikarim peyamên we bigihînim serokatiya herdu partiyan, lê eger ewqas li cem we girîng e, hûn çima têkiliyên rasterast li gel wan ava nakin?**

Ozal ji nişkan ve atlasa li beramberî xwe xiste ser nexşeya Îraqê û got: "Baş temaşe bike, navçeyên Şîe ji başûr dest pê dikin û ber bi Îranê ve Şîe hene. Navçeyên Sûnniyan jî ji rojava dest pê dikin, di nava Urdun û Erebistana Siûdî de Sûnnî hene. Lê berdewama navçeyên Kurd û Tirkmenan Tirkiye ye. Bi wateyek din Tirkiye dikare bibe parêzerê Kurd û Tirkmenan." Min jê re got ku ev nêzî mehekê ye ez li navçeyên Kurdên li Tirkiyê digerim, ew tên binpêkirin û nikarin bêjin em Kurd in jî. Vêca ku Tirkiye Kurdên xwe neparêze, wê çawa Kurdên Îraqê biparêze? Ozal diyar kir ku ew hewl dide hinek yasayên xirab hilweşîne, lê ji bo îqnakirina civaka Tirkiyê pêwîstî bi demê heye. Ozal wiha pêdeçû; "Ji serokên Kurdan re bêje, dikarin baweriya xwe bi min bînin." Êdî gelek peyamên din rêkirin ku dixwest ez bigihînim Barzanî û Talabanî.

Di heman demê de fikrek li gel min çêbû: Hûn çima têkiliyên rasterast li gel serokên Kurd saz nakin û ji bo rasterast ji aliyê wan ve bersiva pirsên we bên dayîn? Ez ji ber du sedeman dudil bûm vê pirsê jê bipirsim. Ya yekem; Erê serkirdeyên Kurd dixwazin têkiliyên rasterast li gel Enqereyê hebin. Duwem; Ez bi çi sifetekê pêşniyara wê yekê bikim, di demekê de ku ez ne nûnertiya wê serokatiyê dikim, ne jî kesekê daxwaz ji min kiriye ku bi navê wan baxivim? Lê min biryar da ku wê serkêşiyê bikim û min got: "Birêz serok, ez bi xwe ne girêdayî tî ji wan partiyan im û nûnertiya wan nakim, lê înkar nakim ku têkiliyên min li gel herdu aliyan hene û ez dikarim peyamên we bigihînim serokatiya herdu partiyan, lê eger ewqas li cem we girîng e, hûn çima têkiliyên rasterast li gel wan ava nakin? Ozal bersiva wê pirsê neda û me guftûgoya xwe berdewam kir.

Ez vegeriyam otêlê û destpêkê min dest bi amadekirina hevdîtinê kir. Min bi faksê ji nivîsîngeha El-Heyat a li Londonê re rêkir. Piştre min telefon ji Talabanî re kir, wê demê li Londonê bû. Min jê re mesele vegot û ji min pirsî, erê ev yek herdu partiyan nerihet nake? Got, berevajî ew razî ye û piştrast e ku Barzanî bipejirîne. Piştre min daxwaz jê kir ku ji Ozal re ragihînim ku ew bi fermî daxwaza sazkirina têkiliyan dikin.

Roja din berî ku ez ji otêlê derkevim û biçim firokexaneyê û vegerim Londonê; ez çûm Herbiye, li wê derê berpirsekî polîsan ku roja berê pêşwazî li min kiribû, ez naskirim û ji min re got; Toperî bi Ozal re derketiye û wê dereng vegere. Min li ser kaxezekê ku logoya otêlê li ser bû, ev yek nivîsand; "Birêz Kaya Toperî.. Birêz Talabanî daxwaz ji min kir ku ez bi navê wî û birêz Barzanî amadeyiya wan a ji bo sazkirina têkiliyên rasterast ên li gel serok Ozal ji we re rabighînim. Ev jî hejmara telefona min a London ê ye û eger peyamek a we ji bo wan hebe, ji kerema xwe bi min re bikevin têkiliyê."

Min name xist nava paketekê otêla Hîltonê û min li ser nivîsand; Birêz Kaya Toperî, ji Kameran Qeredaxî ye, şexsî û taybet e. Piştre min da destê wî berpirsê polîsan. Ez vegeriyam Londonê û di nava kêmtirî heftiyekê de Toperî telefon da min û got: "Ji kerema xwe ji birêz Talabanî û Barzanî re rabigihîne ku serok Ozal ji bo têkiliyên rasterast ên li gel wan razî ye." Bi wî awayî jî 8'ê Adara 1991'an li Enqereyê hevdîtina yekemîn a fermî navbera serkomarê Tirkiyê û şandeke serokatiya Kurd, bi serokatiya Talabanî û endamtiya Muhsîn Dizeyî wekî nûnerê Barzanî hat saz kirin.



# Komplo

**Ahmet Dere**

Dîroka Kurdan bi komployan tije ye. Car caran hêzên dagirker li dijî Kurdan komlo pêk anîne, car caran jî hêzên navneteweyî û car caran jî Kurdan bi xwe li dijî hev komplo çêkirine. Çi yên derve bin û çi jî yên hundirîn bin, di encama her sê cureyên komployan de jî, hêza gelê Kurd hatiye qelskirin.

Ne pêwîst e em şîroveya dîrokê bikin, niha jî komplo dewam dike. Bi taybetî li dijî hêza Bakurê Kurdistanê pêvajoya komployekê nû di rojevê de ye. Rêberiya vê pêvajoyê hikûmeta AKP'ê dike. Di aliyekê de, di bin navê «vekirina demokratîk» de gelê Kurd tê xapandin, di aliyê din de jî, di nava Kurdan de nakokî têne afirandin. Ez vê nêzîkatiya AKP'ê ji hemû komployan xeteretir dibînim. Mixabin di vê pêvajoyê de hin hunermend û rewşenbîrên Kurd jî ji AKP'ê re derfetan diafirînin.

Paralelî senaryoya komploya Dewleta Tirk û ya AKP'ê de, di nava Kurdan de jî nêzîkatiyên xetere bi pêş dikevin. Bi zanabûn, an jî bê zanabûn, hin derdor dixwazin nakokiyan di navbera hêzên Kurd û di navbera hêz û şexsiyetên Kurd de kûr bikin. Mînakekê pir xetere, di demekê pir nêzîk de qewimî; bûyera Şivan Perwer û helwestên ku li dijî wî derketin pêş.

Derbarê bûyera Şivan de, bi taybetî tevlêbûna wî li TRT Şeş'ê de, min pir bidîqet çapemeniya Kurd û ya Tirk şopand. Bêguman, armanca çapemeniya Tirk ew e ku di navbera Kurdan de nakokiyan kûr bike. Lê belê, mirov nikare heman tiştî di derheqê çapemeniya Kurd de bifikire, divê wisa jî nebe. Lê mixabin, pir zehmet e ku mirov bikaribe wateya zimanê rexnekirina hin kesan, an jî yên ku xwe weke Kurd didin masîn, nas bike. Eger li gorî daxwaza van kesan tevgerekê çêbibe, wê demê pêwîst e ji Şivan û ji yên weke wî re, ti mafê jiyanê neyê naskirin. Ev mijar bi tena serê xwe xaleke trajedîk e.

Bi rêya van hevokên min, divê kes fêm neke ku ez Şivan diparêzim. Ez her tim dibêjim; TRT Şeş bi armanca ku ew li dijî têkoşîna rizgariya Kurd were bikaranîn, hatiye damezirandin. Lewre, ez tevlîbûna ti Kurdekî û Kurdekê di vê televîzyonê de napejirînim. Divê her Kurdê hunermend, rewşenbîr û yên ku xwe weke welatparêz dibînin, ji heman saziyê dûr bisekinin. Lê belê, pêwîst e em bizanibin ku AKP dixwaze heman saziyê bi armancekê din jî bikarbîne; nakokiyan di navbera Kurdan de kûr bike û wan bihev bide mijûl kirin. Lewma, ez dibêjim divê em nekevin davika komplogeran. Pêwîst be em ê kêmasiyên hunermendên weke Şivan nebînin, lê nêzîkatiya herî baş jî ew e ku em wan bikişînin rêya rast. Helwesteke cuda tenê dikeve xizmeta hêzên dagirker.

Di dawî de ez dixwazim vê bêjim; mafê her kesî heye ku rexneyan bike, lê belê, beriya ku rexne werin kirin, pêwîst e bê zanîn ka ew ê çi encamî biafirînin.



Dr.Nacî Mamedî*

## Helandina estiyan (Osteoporose)

Nexweşiya osteoporose piranî bi pîr û kalan re derdikeve. Ev nexweşî di estiyan de tê xuyakirin. Li Almayayê ji sedî 30 jin pîştî ku dikevin menapozê ev nexweşî bi wan re çêdibe. Bi mêran re jî piranî pîştî temenê 60 salî û wir de nexweşiya osteoporosê derdikeve.

**Sedema şikandina estiyên mirovan çi ne?**

**Dr. Nacî Mamedî:** 3 şêweyên şikandina estî hene, yek dema ku mirov qezayekê derbas dike; ew dem dîrek estiyên wan dişikên. Ya din jî bi demê re hundirê estiyan dihele û pûç dibe, hingê estî pir qels dibin û dişikên, herwiha jin an jî mêrên ku pençeşêra derunî pê re hebe, hingê jî ew xwe davêje derve, ev jî dibe sedema şikandina estiyê mirovan. Ev nexweşiyeke girêdayî temen e, dema ku jin dikevin 50 salî û bi mêran re jî 60 salî û pêve destpêdike, estî pûç dibe. Lê belê bingeha estî di dema zarokatiyê de têne çekirin, wextê ku mirov hîn di dema zarokatiyê de şîr, mast, fêkî sebze pir bixwe zû bi zû nexweşiya estî bi wan re dernakeve; ji ber wê jî em dibêjin divê xurekê ku ji şîr tên çêkirin zarok pir bixwin ji bo ku bibin xwedî estiyên saxlem. Li welatê me di nav Kurdan de beriya xwarinê şîr, mast, penîr pir dihatin xwarin ji bo wê jî ev pirsgirêk dernediket. Ew vîtamîna di şîr de heye estî xurt dike û diparêze. Em niha li Ewrûpa dinêrin zarok pir wan xwarinê amade dixwin ev jî bo tendirustiya wan pir xeter e.




**Dema ku pirsgrêkê estiyan derketin çareserî çi ye ?**

Çareserî bi piranî bikaranîna dermanan e; divê haftê carekê 70 mîlîgram heb bê standin; di wê hebê de vîtamîna D heye û ew pirsgirêkê hormonîk ku derdikevin jî tije dike. Ev berî ku estî pûç bibe di nava gurçikê de derbas dibe û pêşiya derbaskirina kalsiyumê digire. Nahêlê estî pûç bibe. Lê belê di serî de ew kesên bi vê nexweşiyê ketibin û kîloyê wan hebin di serî de kîloyê xwe dabixin, xwarinên bi vîtamîn bixwin, spor bikin. Xwarin û tevger pir girîng e ango divê ku di jiyanê de harmonî hebe ev hemû ji bo parastina estiyan pir girîng e.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

**Dr.Nacî Mamedî ji Rojhilatê Kurdistanê ye û li Almayayê dijî. Bijîşkê Chîrurgie ye.*

## Ji ber nexwarinê salana 2 milyon û 700 hezar kes dimirin



Rêxistina Tendirustiyê a Cîhanê (WHO) diyar kir ku li cîhanê salane ji ber kêm xwarina zebze û fêkiyan, 2 milyon û 700 hezar kes jiyana xwe ji dest didin.

Rêxistina Tendirûstiya Cîhanê di raporekê de bal dikşîne ser wê yekê ku sîstema xwarina ne tendirust û nekirina sporê bandorên tirsnak li ser tendirustiya mirovan bi giştî dirûst dike. Ew jî dibe sedema serekî ji bo zêdebûna nexweşiyên wekî bilindbûna tansyona xwînê, qelewbûn, şekir, pençeşêr û nexweşiyên dil.

Li gor wê raporê, nexwarin yan kêm xwarina fêkî û zebzeyan bi awayek giştî bandorên xirab li ser tendirustiya mirovan dirûst dike. Bi vî awayî jî salane li cîhanê ji ber vê yekê 2 milyon û 700 hezar kes jiyana xwe ji dest didin.

## Hefta pêş me çalakiyên Kurdan

**"Bûyerên li Rojhilata Navîn û bandora wan li ser rewsa Kurdan û avakirina demokrasiyê "**

Navenda Kulturî ya Kurdan Li Stockholmê di 5'ê Adara 2011'an de semînerekê amade dike û hemû Kurdan vedixwîne wê çalakiyê. Semîner di demjimêr: 13:00.

Semîner ji aliyê sê akademisyenan ve tê dayîn:
Îdrîs Ehmed, Dr. Osman Aytar û Dr. Xalit Xeyat

**Navnîşan:**

***Kist Träf, Demjimêr: 13: 00***

**Calakiya xwep1êsandana Kurd û Ereban li Londonê**

NaKurd û Erebên li Londonê dijîn, bi armanca şermezarkirina rejîma Esad, her roj 1ên şemiyê li ber konsolxaneya Sûriyê, ya li Londonê xwepêşandan li dar dixin.

**Demjimer:** 14:00

Hemû Kurd û Ereb tên vexwendin.

**Navnîşan:**

***Pêsiya Konsolxaneya Sûriyê, li London***

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1-Serokê PKK. 2- Helbestvan, hozan – Dêlegura ku Tirk wek dayika xwe qebûl dikin – Erd, zevî, xak. 3- Xwarin û tiştên xweş – Malbat, eşîr (berepaş). 4- Tiştên ku dişibin meqes (berepaş) – Heger, ger, sedem – Ezman, erş. 5- Navekî jinan (berepaş). 6- Namûs, heya – Lê vegerandin, paşde dayîn. 7- Tayê qalind – Faşîst, hevalê Hîtler. 8- Payetî, bi esil – Pevçûn, lêdan. 9- Navekî mêran – Pronavê yekem – Nîşana elementa Nîkel. 10- Ne tehl e, şekir tê de ye (berepaş) – Ezezî, xweperestî.

**Serejêr:** 1-Bi aştîyê ve girêdayî. 2- Partîya Saddam Hisên – Bingeh, kok, esas. 3- Wêne, şikil, sûret – Vala, bê kes û kûs. 4- Rasterast, kesê ku rûyê wî ji gotinan naêşe (berepaş) – Aletek muzîkê. 5- Stran, awaz. 6- Navekî jinan – Bi Farisî agir. 7- Bergeh, pêlik – Tembûr, aletên muzîkê. 8- Derb, şûn, deq (berepaş) – Kar, xizmet. 9- Tûj, na (berepaş) – Baqê gulan, destê gulan. 10- Fitne, fesad (berepaş) – Bi Ingilîzî tîma sêyemîn, beşek ji muzîkê. 11- Agir, şewat. 12- Dar û geyayên zebeş, petîx, bacan û xiyaran. 13- Di dîroka Grekîyan de xwedayê şer. 14- Nebat û baharatek bêhnxweş. 15- Nenûkên heywanan. 16- Heywan, lawir, cûre.




## Peyamên xwe ji Rûdawê re bişîn

Xwendevanên hêja,

êdî hûn dikarin peyam û îlanên xwe ji me re bişînin, ew ê belaş li vir werin weşandin. Hûn dikarin peyamên sersaxiyê, pîrozbahiyan, agahiyên derbarê hemû cûreyên çalakiyan bi rêya e-mail a me **(info@rudaw.eu)** ji me re bişînin. Bi şertê ku nivîsên we ji 100 peyvan ne dirêjtir bin, em ê wan li vir biweşînin.

# ÇÎROK



Carekê diz ketin bajarê xanê û çiqasî ajalên wan hebûn tevî dizîn. Melê xanê gelekî ji vê rewşê dilteng bû, lê belê du diliyek wî jî hebû, ew difikirî ku dibe diz van ajalan careke din bînin bajêr û bifroşin û ew jî wê goştê wan bixwe. Mele rabû li rûsipiyekî geriya, rûsipiyek dît û jê pirsî:
"Gelo temenê mihiya çend e, çiqasî jiyan dikin?"
Rûsipî got: "weke ez dizanim 7 sal in!"
Li ser vê yekê mele 7 salan goştê mihiyan nexwar ji ber ku heram e.
Hê qîma mele nehat rabû çû ber çem. Li wir dît ku leşker li ber çem rûniştine û goştê mihiyan dipijînin û hestiyan jî davêjin çemê.
Mele fikirî û ji xwe re got: sedî sed niha masî jî goştê van hestiyan dixwin. Ji ber vê jî mele çû hîn bû ka masî çend salan dijîn. Melê soz da heta ku masî dijî ew ê goştê masî jî nexwe.

## Fêrî kurdî bibe

D d د

Dil د‌ڵ



Dest دەست

# Ceribandin



Ji bo vê tiştên pêdivî
Pifokek (balonek), band û derzî



Di serî de pifokê tijî hewa bike
Paşê heta nermahiya wê bimîne hewaya wê kêm bike.



Li herdu aliyên pifokê qasî 3 santîm band bike.



Li cihê bandkirî derziyê bike pifokê.



Tu wê bibînî ku pifok nateqe.




### Jor ber bi jêr

1. Zincîre çiyayekî Kurdistanê.
2. Bajarekî navdar û navenda serhildaneke Kurdan.
3. Navê çemekî li devera Dêrsimê.

### Ji çep ber bi rast

1. Navê bajarekî dîrokî li Bakurê Kurdistanê.
2. Navê gundekî naskirî li devera Colemêrgê.
3. Cihê kitabxwendinê.



## Pêkenok

Dema seyranê,
Zarok gazî bavê xwe dike:
– Bavoooóooo, dadêêêêêêêê zû bikin, goşt veşêrin!
Wayê çêlek hatiye li zarokê xwe digere,
Ev goştê zarokê wê ye em dixwin.

Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk

Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu